



# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin


HEVPEYVÎN

Parlamenterê BDP'ê Sırrı Sakık piştî êrîşa ser Ahmet Türk:

**Ev êrîş êrîşek bêşerefî ye!**

Di rûpela **13**'an de

**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

**Hejmar / Nr. 41** | 20 Nîsan /April 2010 | **www.rudaw.net**

Barzanî derbarê hevdîtina xwe ya li gel Erdoğan

# "Me behsa madeya 140 kir"



(Wêne: Rûdaw)

Piştî serdana Tirkiyê û hevdîtina li gel Serokwezîrê wî welatî Recep Tayyip Erdoğan, Nêçîrvan Barzanî bersiva pirsên Rûdawê dan. Di wê hevpeyvînê de Barzanî behsa giringiya Tirkiyê ji bo Herêma Kurdistanê kir û got ku ew li ser pirsgirêka Kerkûkê li gel Erdoğan axivî ye û ev yek jî wek pêwîstî da zanîn. Barzanî derbarê PKK'ê jî got, ew "hêvîdar e ku PKK qet hizra wê yekê neke ku ew di şerkirina li gel Tirkiyê de destpêker be." ▶ 2

## YEK-KOM û KOMKAR.eu nêzî hev dibin

Demek dirêj sarbûnek û heta astekê dijayetiyek di navbera herdu mezintirin saziyên kurdên Ewrûpayê, YEK-KOM û KOMKAR, de hebû. Ev sarbûn ne tenê bû sedema bihevrekarnekirinê, lê gelek caran van saziyan li dijî hev jî kar kir û astengî li pêşiya hevdu derxistin. Ev helwest bû sedema nerazîbûna gelek kurdên lî Ewrûpayê jî, bi taybetî di salên borî de. Bi guhertina rewşa kurdên Ewrûpa, pêwîstiya xweguhertina saziyen kurdan jî derdikeve pêş. Yek ji nîşanên xwenûkirinê, guhertina navê KOMKAR'ê bo KOMKAR.eu bû. Ji bilî vê yekê di demên dawî de trafîka serdanên di navbera herdu saziyan jî gur bûye û wiha dixuyê ku rêvebirên wan saziyan li nêzîhevbûnekê digerin. Nivîskar Memo Şahîn û aborîzan Nebi Kesen ev pêvajona hembêzkirina YEK-KOM û KOMKAR.eu ji Rûdawê re şîrove kirin. ▶ 7

## "Xemxoriya" zazayan

Erdoğan got ku ew ê televizyoneke bi zazakî jî veke ▶ 5

## Hemwelatiya nûjen

Ji bo ku neçin leşkeriyê, xort ji hemwelatîbûna Tirkiyê direvin ▶ 12

## Fatê hat Rûdawê

Êdî Xaltîka Fatê her hefteyê bersiva pirsê xwendevanan dide ▶ 16

## Kurdên bê nasname

Bêtirî 300.000 kurd li Sûriyê ji nasnameyê bêpar in ▶ 5

# Bêvila Ahmet Türk, kurd û tirk nêzîkî hev kirin

Şopandina dadgeha cerdevan Turan Bilen û birayê wî Metin Bilen li bajarê Tirkiyeyê Samsûnê û şikandina bêvila hevserokê berê yê DTP'ya girtî, Ahmet Türk, bû mijarek ji mijarên sereke yên rojeva Tirkiyê û gelek aliyan helwesta xwe di derbarê bûyerê de nîşan dan. Ji Serkomar Abdullah Gül heta bi Serokwezîr Erdoğan, ji serokên partî û dezgehên sivîl heta nivîskar û rewşenbîrên naskirî, her kesî bi awayekî reaksiyon nîşan da.



**Ahmet Türk**

Di helwestan de bi piranî peyamên piştgiriyê hatin dayîn û êrîşa li dijî Ahmet Türk hat şermezar kirin. Heta serokê MHP Devlet Bahçeli û serokê CHP'ê Deniz Baykal jî êrîş şermezar kirin. Serkomar Abdullah Gül û Serokwezîr Erdoğan bi rêya telefonê li tendirustiya Ahmet Türk pirsîn.

Piştî şikandina bêvila Ahmet Türk bi çend rojan, li heman bajarî, li Samsûnê du polîs hatin kuştin. Kuştina herdu polîsan jî ji aliyê piraniya awira gelemperiya kurd û tirkan ve wek berdewamiya provokasyonên berê hatin qebûlkirin. Şikandina bêvila Türk û kuştina du polîsan ji alî gelek pispor û nivîskarên naskirî ve wek parçeyek ji lîstika hêzên tarî hat şirovekirin. ▶ 2/13









Nêçîrvan Barzanî derbarê pirsgirêka Kerkûkê de:

# “Madem Tirkiye pirsgirêk e, çima em ligel wê behsa mijarê nekin?”

**Hewlêr (Rûdaw) -** Siyasetvanê kurd Nêçîrvan Barzanî hertim bi şêweyekî eşkere û vekirî daxive ku xwendevan ji xwendina hevpeyvînên wî bêzar nebin. Ew di hevpeyvîna xwe de bîrûboçûnên xwe û gelek zanyarî jî bi eşkereyî radigihîne.

Di beşek wê hevpeyvînê de ku tevahiya wê di çapa Rûdaw a Kurdistanê de hatiye weşandin û ew ê di hejmara dahatû ya çapa Ewrûpa de jî bê belavkirin, Nêçîrvan Barzanî di derbarê giringiya Tirkiyê ya li navçeyê dibêje: “Peywendiya min ya bi Tirkiyê re di çarçoveya dîtinek stratejîk ji bo berjewendiyên Herêma Kurdistanê û Tirkiyê ye. Ji ber bazirganî û karkirinê, Tirkiye hevbeşê me yê sereke ye. Ji aliyê siyasî jî ve, tesîrek wê ya mezin li ser doza kurd li Kurdistana Îraqê, li Ewrûpa û li Amerîkayê jî heye. Ew deriyê me yê bi Ewrûpa û rojava re ye. Lewma pêwîste hertim peywendiyên Herêma Kurdistanê yên baş pê re hebin.”

> “Bêguman meseleya neft û gaza Kurdistanê di xweşbûna peywendiyên navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê de xwediyê rolek sereke ye.”

Serokwezîrê berê yê Hikûmeta Kurdistanê behsa rewşa niha ya Tirkiyê dike û dibêje: “Niha jî ku Teyyib Erdoğan û partiya wî ya desthilatdar boçûnên nû anîne, divê em piştevaniya pêngavên wan ên baş bikin. Em dibînin ku Tirkiyê polîtîkayek nû dest pê kiriye bo karkirina li gel Herêma Kurdistanê û Îraqê. Pêwîste em bo çareserkirina pirsgirêka kurdî bi şêweyek dûr ji tundûtûjî û şerkirinê hewl bidin alîkariya Tirkiyê bikin.” Barzanî di derbarê civîna xwe ya li gel serokwezîr û wezîrê derve yê Tirkiyê got: “Beriya niha jî min çendîn caran Erdoğan dîtiye. Ew hevdîtin di berjewenda Herêma Kurdistanê de ne, lê ne di berjewenda kesekî de. Tirkiye rastiya hêzên li Kurdistanê dizane. Ew rewşê baş fêm dikin, lewma wan pêşwaziyan dikin. Di wê serdanê de me behsa çawaniya ber bi pêşdebirina peywendiyên aboriyên li gel Tirkiyê jî kir. Bêtir jî me hewl da hinek bîrûboçûnên derbarê madeya 140 û pirsa Kerkûkê baxivin. Ez bawerim ev cûrê rûniştin bo hevdu fêmkirinê destpêkek baş e.”

### “Tirkiye pirsgirêk e”

Nêçîrvan Barzanî amaje dide pirsgirêka Kerkûkê û dibêje: “Dema em li ser Kerkûkê li gel welatên rojava û Amerîkayê daxivin, ew dibînin ku Tirkiye pirsgirêk e. Gelo madem Tirkiye pirsgirêk e, çima em rasterast di gel Tirkiyê van mijaran behs nekin û bi aramî bighin lihevtêgihiştinek hevbeş. Di vê serdanê de, me hewl da em bi cidî van dosyeyan li gel Tirkiyê behs bikin.”

Barzanî eşkere jî dike: “Min bi navê Serokê Kurdistanê û bi navê Serkomarê Îraqê Mam Celal jî Erdoğan vexwend Hewlêrê ji bo beşdarî merasîma vekirina Firokxaneya Navnetewî ya Hewlêrê bibe û ez bawerim ew ji bo pêngavavêtinê mirovekî wê-rek e.”

Di aliyekî din ê hevpeyvînê de, siyasetvanê kurd Nêçîrvan Barzanî got: “Ez di wan hemû serdanên xwe de nûnertiya birêz Serokê Herêma Kurdistanê dikim û ew serdanên min wê bidomin.”

### “Çavê wan li Herêma Kurdistanê ye”

Di derbarê derxistina neft û gazê û rola wê di meseleya vebûna Tirkiyê li hember kurdan û Herêma Kurdistanê de, Nêçîrvan Barzanî got: “Bêguman meseleya neft û gaza Kurdistanê di xweşbûna peywendiyên navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê de xwediyê rolek sereke ye. Di cîhanê de îro aborî di pileya yekemîn de ye. Eger mirov bikaribe peywendiyên aborî yên temam ava bike, wê peywendiyên siyasî jî bi dû de bên. Di rojnameyekê de hatibû nivîsîn ku Nêçîrvan Barzanî li Tirkiyê navê Kurdistanê bilêv nekir. Bi rastî ez nizanim min navê Kurdistanê anî yan na. Lê divê ew yek bê zanîn ku niha li Tirkiyê ew ne pirsgirêkek e. Niha berpirsên Tirkiyê wek berê ji bilêvkirina navê Herêma Kurdistanê xwe nadin paş û bi şêweyek gelekî sirûştî bikar tînin.” Barzanî amaje da wê yekê jî ku niha çavê hemû cîhanê li ser gaza Kurdistanê ye: “Mezintirîn problema Ewrûpa garantîkirina gazê ye. Çavê wan li Herêma Kurdistanê ye ka ew çawa dikare rola misogerkirina enerjiya wan bilîze. Ez li vir bi piştrastî dibêjim ku polîtîkaya me ya petrolê polîtîkayek serketî bû.”

Serokwezîrê berê yê Hikûmeta Kurdistanê behsa gefên PKK’ê yên ji bo destpêkirina êrîşan kir û got: “Ez hêvîdarim ew ne rast bin, çunkî ew şaşiyek stratejîk a herî mezin e ku PKK bike. Ew pirsgirêk bi şer çareser nabe. Ez hêvîdarim ku PKK qet hizra wê yekê neke ku ew di şerkirina li gel Tirkiyê de destpêker be.”

# Êrîşa li dijî Türk aliyên dijber nêzî hev kirin

**Brîndar Deştî**

Cerdevan Turan Bilen û birayê wî Metin Bilen di 15’ê Kanûna 2009’an de li Mûşê êrîşî girseya gelê ku girtina DTP şermezar dikirin kirin, 2 hes katin kuştin, 8 kes jî brîndar bûn. Ji ber sedemên ewlekariyê, doza herdu kesan rakirin bajarê Samsûnê.

Ji bo şopandina dozê, di 12’ê Nîsan a 2010’an de wekîlên DTP ya girtî Ahmet Türk û Aysel Tuğluk, wekîlên BDP Sirri Sakik, Nuri Yaman, Nezir Karabaş û gelek kesên din beşdarî dadgeha bajarê Samsûnê bûn. Di derketina dadgehê de Ahmet Türk rastî êrîşa kesekî tirk bi navê Ismail Çelik hat û pozê wî hat şikandin. Vê êrîşê rojeva Tirkiyê serûbinê hev kir, êrîşa li dijî Ahmet Türk bi gelemperî hat şermezarkirin.

Piştî êrîşê hinek nivîskar û beşek ji çapemeniya tirk xwedî li êrîşê derket û piştgirî dan vê provokasyonê. Bi taybet rojnameya Hürriyet û nivîskarê wê Yilmaz Özdil di derbarê êrîşê de nivîsên yekalî nivîsandin, piştgirî dan provokasyonê û hêzên li pişta provokatoran. Lê piraniya nivîskarên din ên naskirî li dijî êrîşê û kesên wek Yilmaz Özdil derketin û ew rûreş kirin.

Di vê derbarê de nivîskar Oral Çalişlar (Radikal), Ergün Babahan (Star), Hasan Cemal (Milliyet), Cengiz Çandar (Radikal) û gelekên mîna wan xwedî li Ahmet Türk derketin û êrîş wek provokasyon û lîztika hêzên tarî bi nav kirin.

Ji aliyê din, êrîşa li dijî Ahmet Türk ji alî serokê partiya rastgir MHP Devlet Bahçeli, serokê CHP Deniz Baykal, Serokwezîr Erdoğan, Serkomar Abdullah Gül ve jî hat şermezarkirin û peyamên selametiyê ji Ahmet Türk re şandin.

Ji aliyê din Cîhgirê Serokwezîr û Wezîrê Dewletê Bülent Arinç jî êrîş bi tundî şermezar kir û piştgiriyek mezin da Ahmet Türk. Serkomarê Îraqê Celal Talabanî û Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî piştgiriya xwe ji bo Ahmet Türk nîşan dan.

Ji aliyê din, êrîşa li dijî Ahmet Türk bû sedema vê yekê jî ku kurd û tirk nêzîktirî hev bibin. Çi kurd û çi jî piraniya rewşenbîr û desthilatdarên dewletê bûyer şermezar kirin û weke provokasyonên dezgehên tarî binav kirin. Pirê caran hinek bûyer dibin minasebeta nêzîkbûna hinek aliyên dijber jî. Gelek alî dibejin ku ev êrîşa li dijî Ahmet Türk jî dikare bibe minasebeta nêzîkbûna aliyên kurd û tirk û rê li çareserkirina pirsa kurdî xweş bike. ▶ 13




**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadkurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Memo Celâl

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Parlamenterê AKP yê Amedê di derbarê baraja hilbijartinan de:

# Pêwîste rêjeya ji sedî 10 bê kêmkirin!

Fraksiyona AKP'ê ku hikûmetê birêve dibe û serokê komarê jî jê ye, pakêta guherandina 27 madeyên destûra Tirkiyê pêşkêş kir, tevî ku wê di dema propoganda hilbijartinan de gotibû ew ê tevahiya destûrê biguherîne. Parlamenterê AKP'yê Amedê Îhsan Arslan ku bi eslê xwe kurd e û wek "mejiyê" Erdoğan tê binavkirin, derbarê pirsgirêka kurd dibêje ku di vê qonaxê de bi tenê derfeta guherandina çend madeyan heye û ew ê pirsgirêka kurd gav bi gav çareser bikin.



"Mejiyê Erdoğan" Îhsan Arslan parlamenterê AKP'ê yê Amedê ye

**Rûdaw: AKP niha hewl dide tenê çend madeyên destûrê biguherîne?**

Îhsan Arslan: Erê, şert û mercên niha rê didin ku em tenê hinek madeyan biguherînin. Lê ne guherandina tevahiya destûra Tirkiyê.

**Di kampanya hilbijartinên sala 2001'an de, we soz da ku hûnê destûra serdema derbeya 12'ê Îlonê biguherînin?**

AKP'ê herdem pêdagirî kiriye ku divê tevahiya destûra Tirkiyê bê guhertin û ev yek bi awayekî eşkere ragihandiye. Piştî ku AKP bûye desthilatdar jî, hewl daye vê yekê bike û siyaseta xwe li gor wê yekê dişopîne.

**Çima hûn hewla bidestxistina piştevaniya hêzên opozisyonê nadin?**

Opozisyona Tirkiyê ne tenê di mijara sererastkirina destûrê de, lê herdem li ser rêya piştevanî nekirina karên desthilatê tevdigere.

**Di dema kampanya propagandaya hilbijartinan de, we soz da ku hûnê yasaya partiyên siyasî biguherînin û ji partiyan re rêjeya ji sedî 10 ya gihiştina parlamenê kêm bikin. Lê we sozên xwe bicî ne anîn, di heman dema ku BDP'ê jî piştgirîkirina pakêta we ya niha bi kêmkirina vê rêjeyê ve girêdaye? Ev yek gelo ji tirsa ji destdana dengên we li navçên kurdî bû?**

Guhertina rêjeya ji sedî 10 li seranserê Tirkiyê, me natirsîne. Ger li parlamenê em li hev bikin, em ê danûstandina kêmkirina wê rêjeyê bikin. Bo cîbicîkirina demokrasiyê li Tirkiyê, li gor min, kêmkirina rêjeya ji sedî 10'ê pêwîstiyeke.

**Dengên parlamenterên we têrî derbaskirina sererastkirina madeyên destûrê yên ku we pêşniyaz kiribûn dike, yan hûnê referendûma giştî pêk bînin?**

Dengên parlamenterên me têrî guherîna van madeyan nakin. Me biryar daye referandûm bê encam dayîn û ger ji bo guherandina van bendên destûrê, dengên me kêmtirî 367 bin, wê demê serokomar biryara sazkirina referendûma giştî dide.

**Birêz Arslan, gelo peywendiyên Herêma Kurdistanê û AKP'ê ber bi pêşve diçin?**

Têkiliyên me di gel hemû aliyên Îraqê bi wekhevî û di asteke bilind de ne. Bi dîtina me, bihêzkirina van peywendiyan xizmeta berjewendiyên herdu welatan dike.

**Hûn sererastkirina destûrê weke rê xweşkirina li pêşiya çareserkirina pirsgirêka kurd li Tirkiyê dibînin?**

AKP wê bi awayekî serkeftî qonaxa vebûna demokratîk li Tirkiyê bidomîne. Nabe hemû guherîn bi hev re bên kirin. Bo çareserkirina pirsgirêka kurd û hemû pirsgirêkên din li Tirkiyê, AKP xwedî îrade û bi biryar e.

**Ew guherînên hûn dixwazin pêk bînin, dawî li netewperestî û Kemalîzmê nayîne gelo?**

Ji bo ku Tirkiye bibe beşeke cîhana hevdem, bi awayekî ku zirarê nede yekîtiya siyasî û civakî û aramiya Tirkiyê, herwiha ji bo ku hevwelatiyên me jiyaneke xweş bijîn, em ê qonax bi qonax guherînên yasayî bidomînin.

**Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw**

## "Bila Tirkiye vîzeya Kurdistanê rake"

**Bawer Çem** Amed

Serokê Odeya Bazirganî û Pîşesaziyê ya Amedê (DTSO) Galip Ensarioğlu, bal kişand ku tim di çûn û hatina Tirkiyeyê ya karsazên Herêma Kurdistanê de pirsgirêk derdikeve û xwest vîzeya di navbera Tirkiye û Kurdistanê de bê rakirin.



Serokê Odeya Bazirganî û Pîşesaziyê yê Amedê (DTSO) Galip Ensarioğlu

Serokê DTSO'yê Ensarioğlu derbarê têkiliyên aborî yên di navbera Tirkiye û Herêma Federal a Kurdistanê de ji rojnameya me Rûdawê re axivî. Ensarioğlu destnîşan kir ku di navbera Odeya Bazirganî ya Hewlêrê û DTSO de bi awayeke prensîp li hev kirine û wan biryar daye ku li Hewlêrê fuara aborî ya Diyarbekir li dar bixin. Ensarioğlu destnîşan kir ku ji bo amadekarina fuareke baş bi Musteşariya Bazirganiya Derve ya Tirkiyeyê re hevdîtin çêkirine û ew ê herî dereng vê payîzê fuarê li dar bixin.

Karsaz Ensarioğlu li ser pirsgirêka karsazên kurd ku ji Herêma Kurdistanê tên Tirkiyeyê jî axivî û ev tişt gotin: "Karsazên kurd dema ji Herêma Kurdistanê tên, di warê vîzeyê de pirsgirêk derdikeve. Gelek caran hatina wan rastê astengiyên burokratîk tên. Ev pirsgirêkên gelek mezin in. Em di her fuarê de wan vedixwînin Amedê lê her car jî rastê pirsgirêkan tên. Ji bo ku ev pirsgirêk bi temamî ji holê bê rakirin, em dixwazin di navbera Tirkiye û Herêma Kurdistanê, Îraqê de vîze bi temamî bê rakirin. Vîzeya di navbera Tirkiye, Suriye, Lubnan û Urdunê de hatin rakirin. Lê çima ji bo Kurdistanê vîze nayê rakirin em fêm nakin. Lê divê beriya wan welatan vîze ji bo Îraqê hatiba rakirin. Me ji bo hevdîtinê ji Serokwezîr Recep Tayyip Erdoğan cîvan (randevû) xwest. Em ê di hevdîtina bi Serokwezîr Erdoğan re de jî daxwaza rakirina vîzeyê bikin."

Ensarioğlu di berdewama axaftina xwe de xwest ku di navbera Herêma Kurdistan û Tirkiyeyê de baca gumrikê jî bê rakirin û nêrîna xwe wiha vegot: "Em baş dizanin ku Herêma Kurdistanê hem di warê siyasî û hem jî di warê aborî de ji bo pêşeroja me pir girîng e. Di pêşerojê de wê fersendên pir baş ji me re ava bike. Em neçar in vê fersendê pir baş bi kar bînin. Ji bo vê yekê jî pêwîst e demildest bankayên Tirkiyeyê li wir bêne vekirin." Galip Ensarioğlu pêşniyar kir ku sînorên welatên Rojhilata Navîn tenê li ser kaxiz bimîne û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Çawa ku em berhemeke ku li Amedê hilberiyaye li Meletî dikarin bifiroşin, divê em bikaribin ber, alav û amûrên hatine hilberandin li Hewlêr, Şam û Beyrûdê jî bi serbestî, bê astengî, bê vîze û bê gumrik bifiroşin. Divê ji bo pêkanîna vê yekê şert û merc bên başkirin."

Xwendekarên Zanîngeha Bonnê serdana Hewlêrê kirin

# "Kurdistan pêşketiye, lê dema roj diçe ava..."

Grûpa 17 kesî di gera xwe ya li Kurdistanê rastî gelek aliyên erênî hatin. Lê têbîniyên wan jî hebûn

**Hawar Ebdulrezaq** Hewlêr

Grûpeke xwendekarên Beşa Zanistên Siyasî û Peywendiyên Navneteweyî yên Zanîngeha Bonn a Almanya, bi mebesta têkelbûna di gel civaka kurdî û çêkirina peywendiyan bi zanîngeh û xwendekarên Kurdistanê re, serdana Herêma Kurdistanê kirin û du hefteyan li wir man.

Grûpa xwendekaran ya 17 kesî ku ji wan 3 kurd bûn, diyar kirin ku ew bi dîtina proseya pêşketin û avedankirina li Herêma Kurdistanê ecêbmayî mane, herwiha eşkere kirin jî ku çend xalên neyênî jî hene, bi taybetî di warê rewşa jinan de. Pêşkêşkirina çend semînerên derbarê pirsên siyasî yên Kurdistanê û Îraqê û azmûna siyasî ya Almanya bo xwendekarên Zanîngeha Kurdistan li Hewlêrê, armanceke din a wê grûpa xwendekaran bû.

Xwendekara ji Rojavayê Kurdistanê, Mizgîn Ebdulhemîd endameke wê grûpê bû. Beriya hatina wan bo Kurdistanê, wê ji Rûdaw a çapa Ewrûpa re ragihandibû: "Em vê projeyê weke destpêkekê ji bo xebatên dahatû yên hevbeş di navbera Zanîngeha Bonn û Kurdistan de dinirxînin."

Xwendekara Beşa Zanistên Siyasî li Zanîngeha Bonnê, Cumane Cume ya 26 salî ku ew jî ji Rojavayê Kurdistanê ye, lê li Almanya hatiye dinê, wiha axivî: "Di van du hefteyan de min şanazî bi kurdbûna xwe kir û serdana çendîn cihên dîrokî kir, bi taybet Helebce." Wê got jî: "Ez bi pêşketinên li Herêma Kurdistanê ecêbmayî me. Lê hê maye." Tevî diyar kirina kêfxweşiya xwe, Cumane ji wê yekê nîgeran bû ku li Herêma Kurdistan "Dema roj diçe ava, keçek li ser cadan nayê dîtin."


Xwendevanên kurd tevî hevalên xwe yên alman li Hewlêrê

Elina Mayer ya 24 salî, ku ew jî xwendekara Zanistên Siyasî ye, da xuyakirin: "Min bawer nedikir Kurdistan bi vî awayî pêşketibe, bi taybetî xelkê wê ku herdem bo alîkarîkirinê amade ne. Li Almanya ti gav kesek nayê hevkariya te bike." Elina bi kenê axaftina xwe dom kir û got wê di gel dê û bavê xwe şer kiriye da ku rê bidin ew bê Kurdistanê. Ji ber ku dê û bavê Elina jî weke piraniya xelkê cîhanê li Îraqê bi giştî weke cihê alozî, pevçûn û şer temaşe dikin û Herêma Kurdistanê jê cuda nakin: "Bi rastî ev der ji beşên din ên Îraqê cuda ye. Beriya em bên, me hizir dikir rewşa ewlekariya vir jî gelek xerab e, lê cuda derket." Lê Elina jî weke Cumane dibêje: "Pêwîst e rolê jinê di avakirina civakê de gelek zêdetir be."

Piraniya wan xwendekaran ku rojekê beriya vegera Almanya ji bo Rûdawê gotin ew hez dikin careke din vegerin Kurdistanê û hez dikin xwendekarên Kurdistanê jî serdana zanîngeha wan bikin, ji bo ku ew jî bikarin civaka Almanya nas bikin.

Esyer Uştûk ya 25 salî, ku xwendekara Beşa Peywendiyên Navneteweyî ya Zanîngeha Bonn a Almanya û nivîskara kovareke zanistî ya wê zanîneghê ye, diyar kir: "Ya ku zêde bala min kişand, pêşketinên Herêma Kurdistanê di warê siyasî de bû. Ji bo min xuya bû Kurdistan cihek e ku gelê wê mijûlî çêkirina welatê xwe ne."

Ingrid Ludwig xwendekareke din bû ku hest bi newekheviya li Herêma Kurdistanê dike. Ew xwendekara alman dibêje: "Min hest kir ku ne wekheviya zayendî heye, ji ber ku piraniya cihên ku me serdana wan kir, rêvebir û postên giring di destên mêran de bûn. Min fêm kir ku rolê jinan di van waran de pir biçûk e. Lê dîsan jî Kurdistan gelek pêşketî ye û mirov hest dike ku prosesa wê ya siyasî, proseyeke azad e."

Kesûkarên enfalkiriyan hê jî çav li rê ne

# "Bavê min peyda bikin, da ku bizanim bêhna bavtiyê çawa ye"

**Ako Mihemed Şivanî**
Çemçemal

Piştî derbasbûna 22 sal bi ser karesata Enfalê, hê hest bi zindîbûna wê cinayetê tê kirin û goriyên rizgarbûyî niha jî behsa çîrok û serpêhatiyên girtîgehên Enfalkiriyan dikin, wê serdemê wek serdemê nivistina mirovahiyê binav dikin.

Rêjîma Baasê di 6 qonaxan de proseya Enfalê meşand, ew pêl li deverên Germiyan, Qeredax, Deşta Hewlêrê, Koye, Rewandiz û Behdînan hat meşandin. Li gor statîstîkên aliyê kurdî, ji xeynî windakirina zêdeyî 180 hezar welatiyên kurd, bêhtirî 4 hezar gundên Kurdistanê jî bi tevahî hatin kavilkirin.


Di operasyên Enfalan de zêdeyî 180.000 mirovên kurd hatin windakirin

Nêrgiz Hesen ku du zarokên wê di girtîgeha Dubzê de jiyana xwe ji dest dan û piştî 22 sal îsal hestiyên zarokên wê vegerandin bo Çemçemalê, bi çavên tejî hêsir, destê xwe bilind kir û got: "Hunxêr hatin ey zarokên min yên ku ji ber birçîbûnê mirin, baş e çima bavê we ne bi we re ye!" Arteşa Baas a Îraqê piştî ku Nêrgiz û malbata wê bi xwe re dibin, hevserê wê Ji wan cihê dikin û Nêrgiz û zarokên wê di girtîgeha Dubzê ligel hezaran jin û zarokên din ên GermIyanê hatine zîndanîkirin. Nêgrizê behsa çawaniya mirina wan her du zarokê xwe kir: "Du zarokên min di girtîgeha Dubzê de tûşî zikçûn û verişyanê bûn, kes di hawara me de nehat, heta ku mirin. Piştre bi zorî ji me standin û veşartin." Nêrgiz dide xuyakirin: "22 sal e ez li benda vegeriyana zarokên xwe me."

Wêya ku zêde cîhê nigeraniya kesûkarên Enfalkiriyan e, piştî 22 salan, heta niha hestiyên endamên malbatên wan bo ser axa bav û kalên wan nehatine vegerandin û hê piraniya wan li benda zindî vegeriyana wan bimînin.

Îva, ew keç e ku di nav otombîleke leşkerî de hat dinê û lewra jî navê danîn Îva. Ew keç tenê cilûbergên reş li xwe dike û niha jî li Nahya Şoreş dijî. Dema mirov li rûyê wê dinere, dixuye ku di cîhaneke bê naza dê û bav de dijî. Piştî derbasbûna 22 sal li ser Enfalê, Îva gelek meraqa dîtina hestiyên bavê xwe dike û dibêje: "Ez amade me meaşê Enfalê jî wernegirim, tenê bavê min ji min re bînin, bila ez wî bêhn bikim û bizanim bêhan bavtiyê çawa ye." Îva ku herdema xemla wê reş e, wiha berdewamî da axaftina xwe: "Bes e, bila hikûmet hemû salekê me negirîne, em ew qas giriyane ku li jiyanê bêzar bûne."

Roja 13'ê Nîsan a 2010'an hestiyên 104 zarokên kurd li bajarê Hewlêrê veguhastin Qeza Çemçemal. Ew hestî yên wan zarokan bûn ku piştî cudakirina wan ji malbatên wan li gel dayikên xwe di girtîgeha Dubzê de hatin zîndanîkirin, lê nekarîn li hemberî dijwariyên girtîgehê berxwedanê bikin û ji ber nexweşî û birçîbûnê mirin û di goristaneke bikom de li Dubzê hatibûn veşartin.

Wezîrê Karûbarê Şehîdan û Enfalkiriyan yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê, Dr. Mecîd Hemedemîn, ragihand ku di dahatûyeke nêzîk de wê gorên komî ên devera Hemrînê bikolin ku hestiyên laşê kurdên Enfalkirî têde ne û ew ê hestiyên wan vegerînin. Dr. Mecîd eşkere kir: "Testa DNA wê ji bo hemû hestiyan were kirin, ji bo ku di dahatû de werin naskirin" û di berdewamiya axaftina xwe de got: "Ji bo nasîna yek bi yekê hestiyên Enfalkirî û vegerandina wan ji bo malbatên wan, divê test bo hestiyên 180 hezar Enfalkiriyan û zêdeyî 500 hezar welatiyên din bikin, vêya jî pêwîstî bi budeceyeke gelek mezin heye."

Erdoğan di civîna li gel 50 nivîskaran de:

# "Ezê kanalek zazakî vekim"

**Stenbol (Rûdaw) –** Di civîna Erdoğan ya li gel 50 nivîskarên Tirkiyê de, ku çend ji wan kurd bûn, nivîskarekî esil cihû daxwaz ji Erdoğan kir ku bo çareserkirina pirsgirêka kurd li gel PKK'ê bicivin, lê Erdoğan got: "Em li gel rêxistina terorîst ya PKK'ê nacivin."

Roja 17'ê Nîsan a 2010'an li Koşka Dolmabahçe li Stenbol, Recep Tayyip Erdoğan li gel 50 nivîskarên Tirkiyê civiya. Nivîskarên kurd Umid Firat, Altan Tan, Muhsin Kizilkaya, Bejan Matur û Arif Zêrevan jî tevlî civînê bûn. Zêrevan ragihand: "Bi tenê ez di nav wan nivîskarên kurd de, rojnamevan û nivîskarê bi zimanê kurdî bûm."

Nivîskarên navdar Orhan Pamuk, Yaşar Kemal û Vedat Turkali di civînê de amade nebûn. Vedat nameyek ji civînê re şand ku nehat xwendin û têde nivîsandibû ku Tirkiye bê çareserkirina pirsgirêka kurd aram nabe. Arif Zêrevan got: "Hat gotin ku Pamuk li derveyî Tirkiyê ye, lê Yaşar Kemal bi qest nehatibû. Bi baweriya min ji ber ew kesekî çep û komarperestê Kemalîst e nehatibû civînê û ji ber ku kêfa wî ji AKPê re nayê."

Di civînê de Erdoğan ragihand ku ew ê kanalek zazakî vekin. Arif Zêrevan ku yek ji beşdarên civînê bû gotûbêjên wê bo Rûdawê eşkere kirin, dibêje: "Nêta dewletê ji vekirina vê kanalê çibe jî, li gor min ji ber ku kurmanc û zaza bira ne û yek netewe ne, ev kenal zerarê nagihîne kurdan, lê bêhtir wê beşek ji çanda kurdî biparêze."



**Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdoğan li Koşka Dolmabahçe li Stenbolê pêşwaziya nivîskaran kir. Helbestvan û nivîskara kurd Bejan Matur jî (li çepê Erdoğan) vexwendî civîna nivîskaran bû**

Arif Zêrevan dirêjî bi axaftina xwe da û got: "Ji sedî 90'ê gotûbêjên civînê li ser pirsgirêka kurd bûn, ji ber tu çawa behsa proseya vebûna demokratîk bike, babet diçe ser pirsgirêka kurd." Di civînê de, piraniya kesên ku dipeyivîn bi awayekî eşkere behsa pirsgirêka kurd dikirin, li koşka ku berê damezrênerê Komara Tirkiyê, Mistefa Kemal têde miriye. Nivîskarê ji Amedê Altan Tan, bi awayekî bingehîn di civînê de behsa pirsgirêka kurd kir û berê xwe da Erdoğan û got: "Pirsa kurd bê hevbeşî û wekheviyek dadmend a kurd û tirkan nayê çareserkirin." Herwiha, nivîskarê rojnameya TARAF'ê – ku rojnameyek liberal a Tirkiyê ye – Roni Margulies ragihand: "Divê hikûmet li gel PKK'ê bicive û heta vêya neke pirs nayê çareserkirin." Roni ku bi eslê xwe Cihû ye di nav axaftinên xwe de çend caran got "Birêz Ebdulla Ocalan" ku li gor yasaya Tirkiyê ev gotin qedexe ye û gelek kes li ser bikaranîna wê hatine dadgehkirin û desteserkirin.

Erdoğan got ji ber ku wî carekê di hevpeyvîneke de li gel radyoyek Ausrtaliya gotibû "Birêz Ocalan" gilîname li dijî wî hatibû tomarkirin û dema ji serokwezîriyê derkeve divê li ser vê yekê here dadgehê: "Ne em û ne ti welatek li gel rêxistinek terorîstî gotûbêjan nake." Herwiha, derbarê daxwaza nivîskaran ya pêwîstiya rêdana bi xwendina dersên kurdî li xwendingehên hikûmetê de, Erdoğan got: "Madeyek destûra Tirkiyê rê bi vê yekê nade, lê xelk dikarin herin kursên taybet ên fêrbûna zimanê kurdî ku li derveyî xwendingehan tên vekirin." Arif Zêrevan jî dibêje: "Erdoğan di vî warî de ne ji dil bû û amaje bi wê yekê jî neda ku bo guherandina wê madeya destûrê di dahatûyê de hewldan tên kirin."

Erdoğan got, ger vegera herdu grupên Mexmûr û Qendîlê wek wî got: "wek provakasyon û xwepêşandanên ku gelê Tirkiyê aciz kir neveguherîba, niha wê hemû rûniştvanên Mexmûr vegeriyana." Navborî da zanîn ku ew dixwazin serkirdên PKK'ê li Qendîlê nemînin. Zêrevan eşkere dike: "Erdoğan got, me di civîna sêqolî ya dawî de li gel Amerîka û Îraqê ji hikûmeta Îraqê xwest ku serkirdên rêxistina terorîstî dehîd bidin ku ji Qendîlê derkevin."

Zêrevan destnîşan kir ku wî ti axaftinek di civînê de nekiriye, lê dema 5 deqîqeyan li gel cîgirê Erdoğan Husên Çîçek ku xelkê wîlayeta Wan e û wezîrê kultûrê Ertugrul Guney civiyaye da ku gotûbêjan li ser çapkirina Mem û Zîn û Dîwana Melayê Cizîrî ya bi zimanê kurdî bike. Wan ti soz nedane, lê bawer dikim ewê di dahatû de van kitêban çap bikin û wergerînin. Di civîna li gel Erdoğan de 4-5 nivîskaran daxwaz kirin hinek kitêb bi zimanê kurdî ji aliyê hikûmetê ve bên çapkirin."

# Li Sûriyê bêtirî 300.000 kurdên bê nasname hene

## Nîvê wan ejnebî "biyanî" û qeydkirî ne, yên din "mektûm" û neqeydkirî ne

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

Mirov vê dîmenê bîne ber çavê xwe: Ji bo ku tu bikaribî bizewicî, divê tu serî li Dezgeha Ewlekariya Siyasî bidî. Ji bo ku tu bikaribî şevekê li hotêlekê rakevî, divê tu serî li Dezgeha Ewlekariya Siyasî bidî. Ji bo ku tu bikaribî zaroka xwe qeyd bikî, bixwînî, kar bikî û ji bo gelek tiştên din, divê tu serî li Dezgeha Ewlekariya Siyasî bidî. Ev dîmenek ecêb e! Rast e. Lê ji bo kurdên Sûriyê yên bê nasname jiyana rojane ye.

Di sala 1962'ê de, ango berî 46 salan, Hikûmeta Sûriyê di rojekê de nasnameya sûrî ji 120.000 welatiyên kurd stand. Zarok û zarokên zarokên wan kesan jî, iro bê nasname dijîn. Ew ji hingî ve bêyî mafên bingehîn ên welatiyan dijîn. Ta niha ne diyar bûye ka îro hejmara vê grûpa kurdên bênifûs çiqas e. Li gor lêkolîneke nû ya malpera KurdWatch.org'ê li Sûriyê 154.000 kurdên bê nasname yên qeydkirî hene. Li Sûriyê ji van kurdan re "ejnebî", ango biyanî, tê gotin. Siyamend Haco, birêvebirê projeya malpera KurdWatch'ê, ku ji Berlînê xebata xwe dike, diyar dike ku "ji bo yekemîn car gengaz bû, ku mirov hejmarên pêbawer lêkolîn bike, ku li derveyî çarçeweya agahiyên Hikûmeta Sûrî ne." Ew berdewam dike û dibêje: „Jimarên me yên sala 2008'ê ne. Hikûmeta Sûriyê ta îro naxwaze wan biweşîne." Ji bilê kurdên ejnebî herwiha kurdên mektûm jî hene, ango kurdên bê nasname yên di ne qeydkirî. Ji ber ku ew di qeydên medenî de nehatine qeydkirin, hejmara kurdên mektûm ne naskirî ye. KurdWatch texmîn dike ku hejmara wan dora 160.000 e. Siyamend Haco dibêje: "Em di wê baweriyê de ne ku li Sûriyê bi giştî bêtirî 300.000 kurdên bê nasname dijîn."



**Sûriyê di sala 1962'an de 120 hezar kurd ji hemwelatiyê bêpar kirin**

Lêkolîna "Kurdên bê nasname li Sûriyê - koçberên neqanûnî yan goriyên siyaseteke neteweperest?" ku bi zimanên elmanî, ingilîzî, kurdî û erebî hatiye weşandin, behsa karên cudakirinên regezperest dike ku li ser kurdên bênifûs yên qeydkirî û ne qeydkirî tên pêkanîn. Li gor vê lêkolînê kurdên bênifûs bi taybetî di warê mafên xwe yên siyasî, mafên xwe yên milkdariyê û mafê xwendin û hilbijartina azad a pîşeyê, rastî astengiyên berbiçav tên. Lêkolîn herwiha behsa mersûmê "biryara komarî" ya serjimêriya sala 1962'ê û pêkanîna wê dike, herwiha wan hevbendiyên berjewendiyan bi nav dike ku ji bo biryadayîna mersûmê berpirsyar bûn. Siyamend Haco dibêje: "Li vir jî em derbasî asoyên nû dibin. Em bi şêweyekî berfireh agahiyan diweşînin, ku heta niha belabela û bi zimanê erebî bûn."

Di lêkolînê de eşkere dibe ku siyaseta beramber kurdên bênifûs li jêr Beşar el-Esed jî nehatiye guhertin. Serokê Sûriyê, ku berî dora deh salan wek reformîstekî dest bi kar kir, çend caran behsa çareseriyekê ji bo kêşeya kurdên bênifûs kir. Lê heta niha tiştek pêk nehatiye. Ta ku çareseriyek peyda bibe, kurdên bê nasname mecbûr in berdewam ji bo karûbarên xwe yên rojane serî li Dezgeha Ewlekariya Siyasî bidin.

*Lêkolîn dikare di malpera www.kurdwatch.org de bê xwendin.*

Êdî maleke jinên Nisîbênê jî heye

# “Armanca me ew e ku baweriya jinê bi wê çêbibe”

## Tevî ku mala jinan tenê şeş mehan deriyê xwe vekirine jî, lê hata niha nezî 40 dosya gihiştine navendê

Ji bo zanîna daxwazî û pirsgirêkên jinên Nisêbînê, me berê xwe da Mala Jinan a Nisêbînê “Gulşîlav”ê. Li wir me hevdîtinek li gel berpirsa Gulşîlavê ya civaknas, Gul Berki saz kir. Gulê pirsgirêk û daxwaziyên jinên Nisêbînê ji me re vegotin û kêfxweşiya wan a bi vebûna Gulşîlavê anî ziman û got: ”Armanca me ya sereke ew e ku baweriya jinê ya bi xwe çêbibe.”


Mala jinan “Gulşîlav” xwedî pirtûkxeneyekê ye jî

### “Destpêkê de piranî mêr dihatin”

Mala Jinan ya Nisêbînê, Gulşîlav, li 24’ê Cotmeh a borî bi festîvala “Demokrasî azadiya jinê ye. Sînorên azadiyê nîn in” vebû. Derbarê destpêka vebûna wê mala jinan, Gul Berkî diyar kir ku ji jinan bêhtir, mêr dihatin serî li Gulşîlavê didan û wan Gulşîlav weke Mala Starê fêhm kiribûn û ji me dipirsîn, ka nivînên we hene? Jin wê li vir razên? Û... hwd. Di berdewamiyê de, Berkî diyar kir ku wan biryarek stand û êdî nahêlin mêr bi tu awayî bikevin hundirê Gulşîlavê.

Gul Berkî herwiha diyar kir ku armanca wan ew e profîla jinên Nisêbînê derxînin û di hêlên Psîkolojîk, Sosyolojîj û Hiqûqî de, ji jinan re bibin piştevan “Em nabêjin emê ji hemû pirsgirêkan jinan re çareseriyê bibînin. Armanca me bêhtir ew e ku em bikaribin baweriya jinê ya bi xwe çêbibe û jin bi xwe bikaribe çareseriya pirsgirêkên xwe bike.’’

### “Jinên Nisêbînê tenê tundiya dewletê weke tundî binav dikin”

Berkî balê dikşînê ser wê yekê ku jinên Nisêbînê ji tundiyê, tenê tundiya ku dewlet dike fêhm dikin “Me ankêtek amade kir, di wê ankêta pirsa tundiyê jî hebû û tişta ku pir bala me kişand ew bû ku jinên Nisêbînê tenê tundiya ku dewlet pêk tîne, weke tundiyê dizanin. Lê ew lêdanê, sixêf û dijûnan, tundiyên psîkolojîk û zanyendî weke tundiyê nizanin.”

Tevî ku ev 5-6 meh in Gulşîlav vebûye, lê niha nêzî çil dosya li ber destê wan e. Derbarê wan de, Berkî dibêje “Heta niha dosyayeke ensestê, yeke leşfiroşî û yek a xwekuştinê di destê me de heye û naveroka dosyayên din jî cuda ne.’’ Bi berdawamî: “Ji ber ku civaka me civakeke girtiye û jin bi dirustî nikarin pirsgirêkên xwe bînin ziman, gelek pirsgirên ku jinên me dijîn veşerî dimînin. Naxwe niha wê gelek dosya bi naverokên gelekî cuda li ber destê me bûna.”

Li ser dosyaya leşfiroşiyê, Berkî got ‘’Jinek hate cem me û ji me re eşkere kir ku zilamê keça wê zorê li keça wê dike daku laşfiroşiyê bike.” Gulxanê dîsan got “Ne tenê ev pirsgirêk hene; herwiha pirsgirêka lidervemayina jinê jî heye. Heta niha me du jinên ku lider mane, şandine Mala Starê ya Amedê, lê jinên ku em negîhan wan jî, teqez hene.”

### “Êdî maleke me jî heye”

Berkî diyar kir ku bi vebûna Gulşîlavê jinên Nisêbînê gelekî kêfxweş in û pêwendiyek baş nîşan didin “Êdî jinên Nisêbînê xwe bi tenê nabînin û dibêjin; êdî maleke me jî ya ku wê li me xwedî derbikeve, heye’’

Berpirsa Gulşîlavê diyar kir ku li ser daxwaza jinan, wan kursên kurdî û tirkî vekirin e. Bo xebatên xwe yên dahatûyê jî, wê wiha axivî “Pirsgirêkeke sereke ya jinên Nisêbînê, aboriye. Ew ji me dixwazin em karekî ji wan re bibînin û beşeke pirsgirêka wan a aborî çareser bikin, lewma em ê di demeke nêzîk de xebatên kooperatîfî bidin destpêkirin.”

**Şengül Ogur - Nisêbîn**

# Jin ji debara malbatê berpirsyar in

**Dêrsim (DÎHA) –** Nanpêjî ”Firin”a jinan a Keskasor ku ji aliyê Şaredariya Dêrsimê ve hate sazkirin, nanpêjiyên zilam lê dixebitin li pey xwe dihêle. Ew nanpêjiya jinan ku di rojê de 2 hezar nanan dipêje, pêşdarazên li hemberî jinê vala derdixe. Jinan diyar kir ku tama nanê bi destê jinê, xweştir e.


Jinên nanpêj zora merên nanpêj birin

Li Tirkiyê bi piranî di qada karê aboriyê de, mêr dixebitin. Lê li Dêrsimê li dijî vê yekê jinên ku 2 salin nanpêjiyê dikin, feraset û pêşdarazên li hemberî jinê, pûç derdixe. Nanpêjiya Jinê ya Keskesorê, 2 sal berê bi alîkariya Şaredariya Dêrsimê hate avakirin. Di nanpêjiyê de, 3 jin dixebitin û her rojê 2 hezar nanan dipêjin. Nanê ku bi destê jinê tê pêjandin ji ber tam û paqijiya xwe bû rêwîngeha Dêrsimiyan. Jinên ku rojê 2 hezar nanan dipêjin diyar kirin ku ew bi vê xebata xwe dixwazin nerînên li hemberî jinê bişkinîn.

Dayika bi navê Nurcan Guzel, diyar kir ku piştî temenê xwe yê 40 salî, wê dest bi karê nanpêjiyê kir û bi vî karî debara 4 zarok û hevjînê xwe yê betal dike. Guzel, xwest ku hemû karê nanpêjiyê bidin jinan: “Jin bêtir giringiyê didin paqijiyê. Li gelek bajaran ji ber ku nanpêjî ne pak in, tên mohrkirin û rastî sizayan tên. Lê jin hem pak in, hem jî baldar in. Ji ber vê yekê divê ji niha û şûnde hemû karên nanpêjiyê bidin jinan.”

Guzel da zanîn ku êdî azadiya aboriya jinê, şert e: “Ez tenê bi xebatê debara malbatê dikim. Ez qet ne difikirîm ku piştî temenê xwe yê 40 salî, dest bi karê nanpêjiyê bikim. Ji bo jinan kar pir giring e, lê karê nanpêjiyê şêwirmendiya jinê jî kurd dike.” Guzel, anî ziman ku di rojê de ew 2 hezar nanan dipêjin û rastî eleqeyek mezin tên.

Dayika 2 zarokan û ostayê pesta û şêraniyên din, Kîmet Tekkiliç jî anî ziman ku ew di demek nêzîk de ferî zêdebûna kar bû û wiha got: “Piştî li bajar nanpêjiya jinê vebû, gelek pêşdarazên li hemberî jinê şikandin. Niha tevî ku ez ducanî me jî, ez bi rehetî karê nanpêjiyê dikim. Dema ku zilam betal bin, bi hevjînê xwe re pirsgirêkan dijîn. Lê dema jin xwedî kar bin, pirsgirêk çênabin.”

# Jinên Colemêrgê bar dikin

**Colemêrg -** Jinên li Gundê Çemkaya girêdayî Colemêrgê ku nikarin ji ber operasyonan zeviyên xwe biçînin, dixwazin operasyon bên rawestandin.

Jinên li Gundê Çemkaya girêdayî navenda Colemêrgê ku karê çandiniyê dikin, ji ber operasyonan bi fikarin. Jinan diyar kirin ku ji ber amadekariyên operasyona dersînor, ew nikarin biçin zeviyên xwe û eger wiha be, ew nikarin karê xwe bikin. Jinan herwiha eşkere kirin ku ger operasyon neyên rawestandin, ew ê ji gundê xwe barbikin.

Jina bi navê Fatma Acar a 70 salî, destnîşan kir ku operasyon li ser jiyana wan tesîrek negatîv pêktîne û ji ber van operasyonan, wan gelek êş kişandine. Acar da zanîn ku êdî ew naxwazin êş bikşînin: “Rewşa niha dişibe rewşa salên 1990’an. Eger wiha biçe em ê bi neçarî ji gundê xwe bar bikin. Ma aramî ne para me ye jî? Em dixwazin ev xwîn raweste û aramî bikeve cîhanê. Dayîka 3 zarokan, Eylem Güneş jî derbarê mijarê de axivî û anî ziman ku eger ew dest ji gundê xwe berdin, dewlet êdî nikare zirara wan telafî bike.



# YEK-KOM û KOMKAR.eu nêzî hev dibin

## Piştî sarbûna bi dehsalan, herdu federasyonên kurdan li Ewrûpa êdî di şahiyên hevdu de tên dîtin




**Zekî Ozmen** Marburg

YEK-KOM (Yekîtiya Komelên Kurd li Almanya) ku ji 1993'an ve hatiye damezirandin, berdewamiya Feyka-Kurdistan ya di sala 1984'an de hatiye damezirandin e. Li Almanyayê bi giştî nêzîkî 70 komele di bin banê vê federasyona komeleyan de xebatên xwe dimeşînin. Her wiha banekî din yê komeleyên kurdên li Almanyayê KOMKAR.eu ye. Ev konfederasyona komeleyên kurdan jî ji sala 1979'an ve çalak e û niha nêzîkî 20 komeleyên girêdayî wê di nava xebatê de ne.

Bihevrekarnekirina van her du banên komeleyên kurd gelek caran dibe cihê rexneyan. Lê kêm jî be, îsal cemeda di navbera her du saziyan de hate şikandin û KOMKAR.eu bi serokê xwe Kovan Amedî tevlî kongreya 16'mîn ya YEK-KOM´ê bûn. Birêveberên YEK-KOM'ê jî tevlî şahiya Newroza KOMKAR.eu ya li Wuppertalê bûn. Ev jestên dualî bû sedemê kêfxweşiya gelek kurdan.

Nivîskarê kurd Memo Şahîn ku ji bo hevkariyeke bi vî rengî gelek xebat kiriye, li ser van jestên di navbera van her du saziyan wiha dibêje: "Hîn berî ku ev jest û hatin û çûyin dest pê nekirîbûn, min li derûdora xwe û bi hevalên ku berpirsiyariya hinek dezgehên kurd dikin lobiya vî karî kir. Ev çend salên dawî ne ku li gelek civîn, panel, konferans û semîneran de ji bo pêkanîna avakirina dezgehek kurd li Almanya û Ewrûpayê hewl didim. Pêwist e em jibîrnekin: Dema em kurd ji hevûdu dûrbikevin, silavê nedin hev, xebatek hevbeş najon, ev bi berjewendiya dijminên gelê kurd tê. Lê dema em nêzikî hevûdu bin, bi hevre li ser hinek xalên bingehîn xebatek hevbeş bajon, em dikarin gelek bendên ku îro li pêşiya kurdan in ji holê rakin."

### "Pêwendiyên PKK û PSK jî bûye sedema jihevdûrbunê"

Her çiqas Memo Şahîn bibêje pêwist e ku em niha sedemên bihevrekarnekirinê nexin pêş û dem dema bihevrekarkirin û derxistana xetên hevpar yên rêxistinên kurdan e jî, aborîzanê kurd Nebi Kesen ku ji nêz ve li ser van meseleyan radiweste, tîne zimên ku ji ber her yek ji van saziyan nêzîkî partiyeke siyasî ya kurd e (PKK û PSK), cûdayetî û nakokiyên di nav van partiyan de herdem bûne astengiyek li ber dîyalog û hevkariya van her du saziyan jî.

Kesen cihê mixabiniyê dibîne ku her du rêxistinan piraniya karên xwe kirine karê peydakirina raya giştî ya ji bo pêvajoyên li Kurdistanê. Ew dibêje ji ber vê helwesta wan rewş û daxwazên koçberên kurd li Almanyayê pir caran li ser kaxezan mane. Kesen behsa wê yekê dike ku pêwist e yekem karê van her du saziyan li ser çareserkirina pirsgirêkên koçberên kurd yên li Almanyayê be, ji ber ev her du sazî bi xwe jî yên li diyasporayê ne. Nebi Kesen wisa pê de diçe: "YEK-KOM û KOMKAR.eu bi pîranî li ser meseleyên koçberiyê bisekinin û li çareseriyan bigerin, ew ê him bigihîjin encamên nêzikê hev û him jî ji aliyê hevkariyê ve mecbûr bibin. Rewş û şertên koçberên kurd wisa ne ku di xebatên pratîkî de cûdahiyên sîyasî bê wate dimînin. Wekî mînak: Dersên zimanê kurdî li dibistanan bi sedema avakirina komeleya dê û bavên kurd ya bi navê ´Yekmal´. Her du federasyon, gelek rêxistin û şexsiyet di bin navê ´Yekmal´ de ji bo beşdarbûna zarokên kurd bi hev re xebat kirin."

Memo Şahîn jî bi heman şêweyî behsa giringiya hevkariya van her du saziyên kurdan dike û van mînakan dide: "Ger bereya Kurdistan li Başûrê Kurdistanê ava nebûya, kurdan wê nekarîba destkeftiyên piştî 1991'an bi dest bixin. Ger xebateke hevbeş di navbera PDK û YNK'ê de nebûya, kurdan wê ji berya 6-7 salan nekarîba gavên ber bi dewletbûnê ve bavêjin."

Şahîn wisa pê de diçe: "Rewşa kurdên Almanyayê ne baş e. Kurd hîn bi rengên pasaportên xwe wek tirk, faris an jî ereb tên hesibandin û ne wek grubek e koçber a resen tên naskirin. Sedemên vê gelek in. Lê ya herî giring ew e ku Almanya ji bo berjewendiyên aborî û siyasî ´hasasiyetên´ Tirkiyeyê ber bi çav digire û xwe ji kurdan dûr dike. Kurd li Almanyayê ji aliyê pêwendiyên bi hêzên siyasî û rexistinên civakî re sist in. Pêwist e kurd li ser van her du xalan hûr û kûr bifikirin. Divê kurd êdî rêxistinên xwe ji bo hewcedariyên demê bigûhurînin."

### "Pêwîstî bi 'Konseya Kurdên Almanyayê' heye"

Memo Şahîn modelên ku gelên din li Almanyayê pêk anîne bi vî rengî dide nîşandan: "Rexistinên yewnanî, ermenî û cihû, komeleyên spanî û îtalî li Almanyayê ji hev ne qut in; Hemû di bin sîwanekî de hatine cem hev. Di nav komeleyên wan de ji her rengê siyasî de însan cih digirin. Lê ji bo berjewendiya endam û gelên xwe di bin sîwanekê de tên cem hev û bi hevre têdikoşîn. Ji bo vê jî pêwîst e em kurdên Almanyayê dûr û dirêj bifikirin û li gora wê jî haziriya xwe bikin. Divê di bin sîwanek netewî de Konseya Kurdên Almanyayê were avakirin."

Nebî Kesen jî ji bo dahatûyeke baş ya kurdên Almanyayê pêşniyareke bi heman rengî mîna ya Memo Şahîn tavêjê holê û hevkariyeke muhtemel ya YEK-KOM û KOMKAR.eu wisa dinirxîne: "Hevkariya her du rêxistinan wê roleke erênî li ser kurdên Almanyayê bilîze. Ji bo daxwazên kurdan rêxistineke wekî Konseya Navendî ya Cihûyan (Zentralrat der Juden) yan jî Cîvata Tirk li Almanyayê (Türkische Gemeinde in Deutschland) pêwist e."

Ew dîsa bi bîr dixe ku bi yekîtiyeke wisa, partiyên alman yên mezin jî wê mecbûr bimînin ku li daxwaziyên kurdan guhdarî bikin. Kesen di dawiya babetê de vê bangewaziyê li hêzên siyasî yên kurd jî dike: "Divê partiyên kurd jî fêm bikin ku peywira rêxistinên wekî YEK-KOM û KOMKAR.eu yê êdî bê guhertin. Hejmara kurdên Almanyayê ji milyonekî derbas dibe. Pêwist e êdî ev sazî guhên xwe bidin ser çareserkirina pirsgirêkên van kurdên koçber."

*Di hejmara pêş ya Rûdawê de wê dîtinên serokê YEK-KOM Ahmet Çeli k û KOMKAR.eu yê Kovan Amedî werin weşandin.*

**"Divê partiyên kurd jî fêm bikin ku peywira rêxistinên wekî YEK-KOM û KOMKAR.eu yê êdî bê guhertin."**



**Nebi Kesen**

**"Dema em kurd ji hevûdu dûrbikevin, silavê nedin hev, xebatek hevbeş najon, ev bi berjewendiya dijminên gelê kurd tê."**



**Memo Şahin**

# Çarşema Sor li Bottropê hat pîrozkirin

**Seyîdxan Kurij** Bottrop

Êzidiyên derûdora bajarê Bottropê roja 18'ê vê mehê ji bo pîrozkirina Çarşema Sor li navenda ciwanan ya wî bajarî "Haus der Jugend" gihiştin hev. Pîrozkirina cejna Çarşema Sor bi xêrhatina pêşkeşwan Dinya Mirad dest pê kir. Paşê beşdaran ji bo rêzgirtina li şehîdên Kurdîstanê deqîqakê bê deng man.

Dinya Mirad li ser cejna Çarşema Sor agahdarî dan beşdaran, ji ber ku gelek ciwanên êzidî ku li Ewrûpa mezin bûne, baş wateya cejna Çarşema Sor nizanin.

Piştî axaftina Dinya Mirad beşdaran bi hevra bi kurdî dua kirin û piştî duakirinê pêşbirkiya heqan dest pê kir. Li vir pêşbiran heqên xwe li hev xistin, dawiyê de kesê ku heqê wî saxlem ma, wî pêşbirk qezenc kir. Her malbat ji malê xwarinên kurdî amade kiribûn û anîbûn. Beşdaran bi hevre xwarin xwarin û piştî wê beşdaran heta derengiya şevê bi muzîka hozan Rojhat govend gerandin.

Çarşema Sor cejna êzîdiyan ya herî naskirî ye. Her sal, di yekemîn çarşema meha Nîsanê ya li gor salnama kevin de tê pîrozkirin. Li gor baweriya êzîdiya, xwedayê alemîn her sal melekekî rê dike ser ruyê erdê, ji bo ku nebaşiya li nav însanan ji holê rake û başî di nav însanan de belav bibe.



**Van herdu beşdaran bi cilên xwe yên kurdî bala amadebûyan kişand**



Stêrka derhênerê Zaxoyê, Sahîm li Belçîka geş dibe

# "Sînema kurdî ne azad e"

## Derhêner Sahîm heta niha çendîn xelat wergirtine û bi fîlmê "NAN" hat naskirin

**Rûdaw: Fikra ku tu sînemayê hilbijêrî çi bû? Tiştekî taybetî hebû te bikşîne nava sînemayê?**
Sahîm: Bi zaroktî min ji hunerê hez dikir, bi taybetî çêkirina wêneyan. Min dii 9 saliya xwe de, kamîrayeke kirî û wêneyên mirovan dikşandin. Di sala 1994'an de jî, min computerek kirî û min karê wêne û montajê berdewam kir. Sala 1997'an jî min dest bi çêkirina kurte fîlman kir. Ji ber van sedeman, min li Belçîka dest bi xwandina derhêneriyê kir.

**Tu hîn ciwanî, lê derfetên te ne zêde ne. Di sînemayê de tu dahatûya xwe çawa dibînî?**
Çiqas derhêner yan hunermend mezintir bibe, wê tiştên baştir çêbike. Herçiqas mirov bi tementir bibe, wê zêdetir di jiyanê de pispor bibe. Ez naxwazim karên bi lez bikim. Ji ber ku mirov fîlmî bo dîrokê çêdike. Ez dixwazim her 2 - 3 salan filmeke baş çêkim, lê ne her sal filmeke xerab.

**Me bihîst tu dixwazî li Kurdistanê fîlmekê bikşînî, tu dikarî hinekî behsa wê projeya xwe bikî?**
Belê rast e, ezê di Hezîran a 2010'an de fîlma xwe li Kurdistanê, li Zaxo bikşînim. Navê film "Land of the heroes" bi kurdî "Welatê Qehremanan" ye. Grûba me ya teknîkî hemû belçîkî ne, lê lîstikvanên me hemû kurd in. Mijara film li ser sala 1988'an û şerê di navbera Îraq û Îranê de ye û tesîra wî şerî ya taybetî li ser zarokan.

**Di wî şerî de tu jî zarok bûyî?**
Belê. Me yek kanala televizyonê hebû, me tenê Saddamê dîktator û dîmenên şerî yên pir nexweş didîtin. Em di gel wan dîmenên nexweş mezin bûn. Saddam dixwest xelkê Îraqê hemû bike qehreman, lê belê nebû qehreman. Ji ber vê yekê min navê fîlmî kir "Welatê Qehramanan."

**Gelo çi mijareke pir giring di nava kurdan de heye ku nebûye film û pêwîste biçe ser perdeya spî?**
Problema fîlmên kurdî ew e ku ew pir polîtîk in, wate hemû nêzîkî hev in. Ev jî ne baş e. Bi rastî sînemaya kurdî ne azad e "yanî: Eger derhênerî senaryoyek bi dilê xwe nivîsandibe, ew nikare alîkariyê wergire." Kurdistan bi çîrokên curbecur zengîne, lê fîlmên me hemû polîtîk in.

**Di nava derhênerên kurd de, kîjanî ji xwe re weke sembol yan nimûne dibînî? Gelo bandora derhênerekî taybetî li ser te çêbû ye?**
Ez Yilmaz Guney weke sembol dibînim, wî di sala 1982'an de li Cannesê xelata PALM ji bo fîlmê "YOL" wergirt. Heta niha jî tu derhênerên kurd nekarîne xelateke wiha mezin bistînin. Divê hemû kurd, Yilmaz Guney weke sembolеke netewî nas bikin, çunkî wî jiyana xwe bo welatê xwe feda kir. Herwiha derhênerên weke Alfred Hitchcock, David Lynch, Martin Scorsese, Stanley Kubrick jî tesîr li ser min kirine.



**Dîmenek ji dema kişandina fîlmê "NAN" de. Yê duyem ji çepê: Şanogerê kurd yê naskirî "Amele"**

**Di sînemayê de xeyala te çi ye?**
Di sînemayê de xeyala min bi sînor e. Eger xeyal bi sînor be, wê bi serkeve. Eger te xeyal nebe tama jiyanê jî tune.

**Tu difikirî rojekê xwe bighînî Hollywoodê?**
Serkeftin ne ewe ku tu xwe bighînî Hollywoodê, serkeftin ew e tu filmên baş çêbikî. Ez dizanim ku Hollywood zêdetir ji fîlmên „bazirganî" hez dike, lê ne fîlmên alternatîf, yanî fîlmên ku ez çêdikim. Ji xwe fîlmên ku ez çêbikim pir pere lê naçin, eger li Ewrûpa pere ji bo filmên min hebin, ji bo çi ezê biçim Amerîka û alîkariyê ji wan bixazim.

**Hevpeyvîn: Dilbixwîn Dara**

*Sahîm di sala 1980 li Zaxo ji dayîk bû ye. Di sala 2004'an de li Belçîka li dibistana Sint-Lukas li Brukselê dest bi xwendina derhêneriyê kir û di sala 2008'an de diploma xwe ya Masterê wergirt. "AVA REŞ" yekemîn fîlma wî ya 2007'an, li Australiya-Melbourne weke baştirîn film xelata Jurî wergirt. Ew bi fîlma "NAN" hate naskirin. Di sala 2010'an de jî ew ji bo Festîvala fîlmên dirêj li Belçîka "Open doek" weke endamê Jurî hat hilbijartin.*

# Pira Delal

Li her çar parçeyên Kurdistanê, çîrokên cihêreng li ser delaliya 'Pira Delal' têne vegotin. Lewma kesên ku serdana Kurdistana Azad dikin sedîsed dixwazin ku li bajarê Zaxoyê Pira Delal jî bibînin; dixwazin ku wekî teyrên demsalî têhna bêrîkirina xwe piçekî bişkênin û çîroka dilê xwe bidin ber bejna Pira Delal.

Li gorî gotinan, Pira Delal jî serê her biharê bi xelkê Zaxo ve xwe dixemlîne, xweşiktir dike û dimîne li benda hezkiriyên xwe; da ku çîroka delalî û nazikiya xwe di dilê hemû kurd û turîstan de biçîne.

Niha li Kurdistana Azad dîsa çîveçîva biharê ye û dîsa Pira Delal bi hemû xweşikahiya xwe ve çavêrêya we dike! De kerem bikin…





**Leyla Ferîqî**

## Leyla Ferîqî li ser Helebçe distirê

**Muhsîn Yasîn** Silêmanî

Piştî vegera wê bo Kurdistanê, hunermend Leyla Ferîqî serdana bajarê Helebçe kir û bi nêt e stranekê li ser Helebçe û ji daniştvanên Helebçeyê re bibêje.

Leyla Ferîqî, ku bi mebesta dîtina binemala xwe û bicîhkirina karên xwe yên hunerî ev çend roj in ji Ewrûpa vegeriyaye Başûrê Kurdistanê, di derbarê karê xwe yê hunerî yên vê dawiyê wiha bo Rûdawê axivî: "Çend proje li pêşiya min in, ezê di pêşerojê de eşkere bikim. Stranek min bi zimanê îngilîzî heye, min ew xilas kiriye û kiriye klîp. Niha ez li sponsorekî digerim ku ji min re belav bike."

Leyla Ferîqî, di roja yekem a vegera xwe de serdana monumentê Helebçe kir û piştre derhênerê Îranî Suhêl Suxen Pejuhî dît ku niha bi derhênana fîlmekî bi navê "88" ve mijûl dibe. "88" fîlmê sînemê yê û behsa bûyera Helebçe dike. Leyla Ferîqî piştî dîtina beşek ji film, biryar da ku stranekê bo fîlm û bextreşiya Helebçe bibêje.

# Buhar navê te ye Evrim




**Di merasima cenazeyê Evrim Alataş de gelek heval û dostên wê xatirê xwe ji wê xwestin**

*Gava difikirim*
*Zixurek di hinavên min de*
*germ dibe*
*Çûkek tê xwe li keviya*
*dilê min datîne*
*Ji nişka ve kulîlkek vedibe*
*Kulîlkêk ji hinavên xwe*
*xwîn digirî.*

*Evrim Alataş*

*Rêzdar Evrim,*

*Sibehek buharê tu ji me veqetiya. Ew buhara ku herê zêde Kurdistan pê xweş dibe, dar dibişkivin û xweza ji nû de li xwe vedigere. Dibe navê jiyanek nû û ji diyarên nenas, ji rêwiyên hêviyê silavan ji te re tîne. Lêger e, dijî û ji bo jiyanê xwe feda dike. Bi hevokên nivîsê re dibe heval, navê dostanî, evîn û aştiyê ye Evrim.*

*Dilnizm û dilniyaz e. Helwestdar lê zarîf, dilşikestî lê berxwedar, tekoşer, evîndara kulîlkên deşt û çiyê Evrim. Bûkilok li welatê min vebûne, nêrgiz ji çiyê daketine û buharê navê xwe daye te Evrim.*

*Tu tê bîra min, gava te dinivîsand, dikeniya û diket nav derya dûrahiyê. Tu dibû wek dayika ku li mezelê zaroka xwe ya bê nav digeriya. Dibû wek bavekî ku di bin barê êşa şewitandina gundê xwe de diêşiya. Dibû derwêşê ku ji dergehê re li aştiyê digere. Li ber dibistanên Galatasarayê dibû xizmê kesên wendabûyî, di berf û baranê de hêviya xwe taloqî nefteya pêş dikir. Di bin çavan de dibû wendabûya cendeknenas û te di nivîsa herî dawîn de xal danî."Çiyayê herî dawîn min dît Bêzar e; çiyayê dimirim Bêzar!"*

*Tu li Kurdistanê digeriya, te bûyerên jiyandî bê tirs, bê hilpekirîn, bi guhdariya dengê wîjdanê xwe dinivîsî. Dûr bûya jî tu nêzîk bû, biyanî bûya jî tu nas bû û te rûyê xwe dabû rojê, aştî pêk anî.*

*Bi piranî te li ser zarokan nivîsî; zarokên keviravêj, zarokên ku li ser kevîran diqefilîn, zarokên ku "bi şimik û şevkirasên" xwe li ber derî dihatin gulebarandin, zarokên ku kêlek jî li ber serê wan tune bû. Te kesên ku li himber zarokan dilkevir in, hikimdarên dilkevirî teşhîr kirin. Tu ew wîjdan bû ku digot "divê mirov teoriyê di jiyanê de bijî, divê qulwarên pratîka jiyanê û zanyariya edaletê wek hev bin." Bê westan te nivîsî, hê çiqas tiştên ku teyê binivîsanda hebûn.*

*Em ê bêriya te bikin dosta min a dilwêrek. Tu wîjdanê gelê min, nivîskar û nefera aştiyê bû. Tuyê di dilê me de her bijî...*

*Medya Deniz*



## Evrim Alataş kî ye?

Di 1976'an de li bajarê Meletê, qeza Akçadağ, gundê Golpinarê di malbatek kurd-alewî de hat dinê. Xwendina sereke û navîn li gund qedand. Perwerdeya xwe li Sten- bolê dimond. Di 1994'an de dest bi rojnamevaniyê kir. 10 salan di nav pêvajoya "Rojnamegeriya Kurdî" de cîh girt.

Di rojname û kovarên wek Evrensel, Birgün, Özgür Politika, Esmer û Tarafê de nivîskariya quncikan kir. Nivîsên wê di Birikim, Amargi, Tîroj û Radikalê de jî hatin weşandin. Di 2003'an de pirtûka wê "Mayoz Çîrokên Parçebûyî" derket. Pirtûka wê ya bi navê "Siya Her Çiyayî Dikeve Behrê" jî di Tebaxa 2009'an de hat weşandin. Evrim Alataş yek ji senarîstên fîlmê "Min Dît" bû. Min Dît dî Festîvala Pirteqala Zêrîn a Antalya de ji alî jûriyê ve xelata taybet a Behlul Dal girt.

Evrim Alataş a 34 salî bi qanserê nexweş bû û bi wê sedemê di 12'ê vê mehê li Amedê çû ser dilovaniya xwe.

# Beriya 112 salan Rojnamegeriya Kurdî dest pê kir

Yekemîn rojnameya kurdî “Kurdistan” di sala 1898’an de derçû. Her wiha: Îsal 80 saliya rojnama ‘Riya Teze’ ye

**Salihê Kevirbirî** Stenbol

293 sal piştî derketina yekemîn rojname, di sala 1898’an de kurd bûn xwediyê rojnameya xwe ya yekem. Rojnameya bi navê “Wettliycke Tiddinghe” ku ji hêla Abraham Verhoeven ve, di sala 1605’an de, li Anversa Belçîkayê bi periyodên 15 rojî û bi zimanên fransizî-flamanî dest bi weşana xwe kir, wekî yekemîn rojnameya di dîrokê de hatiye qeydkirin. Yekemîn rojnameya bi kurdî “Kurdistan” di 22’yê Nîsan a 1898’an de li Kahîreya Paytexta Misrê, ji hêla Mîqdad Mîdhet Bedirxan ve hate weşandin. Rojnameya ku ji 15 rojan carekê dihate weşandin, bi giştî 31 hejmar derketiye. Piraniya hejmarên rojnameya ku 10’ê Nîsana 1902’yan dawî li weşana xwe anî, li Kahîreyê; hinek ji wan li Cenevreyê, hinek ji wan jî li Folkstonê hatine çapkirin.

Di sala 1973’yan de, bi gotineke din 75 sal piştî weşandina rojnameya Kurdistanê, li Kurdistana Îraqê 22’yê Nîsanê wekî “Roja Rojnamegeriya Kurdî” hatiye pejirandin û ji wê rojê heta niha gelek rêzeçalakî têne kirin. Yekîtiya Rojnamegerên Kurdistanê ku kar û barên xwe li derveyî welat berdewam dike, di salên derbasbûyî de, bi biryareke weha, 22’yê Nîsanê wekî “Roja Rojnamegeriya Kurdî” pejirand.

Rojnameya “Welat” ku di destpêka salên 90’î de, bi zimanê kurdî dest bi weşanê kir û yek ji hîmên bingehîn ê rojnamegeriya kurdî tê hesibandin, di 22’yê Nîsan a 1992’yan de dest bi jiyana xwe ya weşanê kiriye. Rojnameya Welat, ji ber sedemên cuda pêşî bi navê “Welatê Me”, paşê jî bi navê “Azadiya Welat” weşana xwe berdewam kiriye. Rojnameya Azadiya Welat ku li Stenbolê, bi periyoda heftane dest bi weşana xwe kir, paşê cih guhest Diyarbekirê. Rojname, ji 15’ê Tebaxa 2006’an vê, bi awayeke rojane diçe ber destên xwendevanên xwe.

## Di 100 salan de 1200 weşan

Ji rojnameya yekem bigire heta niha, ligel tevahiya zehmetî û bêderfetiyan kurdan ji 1000’î bêhtir weşan derxistine û ev hejmar, di 10 salên dawî de her diçe zêdetir dibe. Rojnamegerê Kurd Mehmûd Lewendî ku jiyana xwe li Stockholma Swêdê –ev çend sal in li Parîsa Fransayê- berdewam dikir, vê yekê bi lêkolîna xwe ya ku pêşkêşî çalakiyên sebaret “100 Saliya Rojnamegeriya Kurdî” kiriye diselmîne: “Di maweya 100 salên di navbera 1898-1998’an de kurdan 1200 rojname, kovar û belavok/bulten derxistine. 730 hebên ji wan, ji hêla partî û rêxistinên cihê cihê ve hatine derxistin. Ji vê hejmarê bi tenê 295’ê wan bi kurdî bûne ku piraniya wan bi zaravayê soranî, paşê jî bi kurmancî û dimilkî ne. Weşanên mayî tirkî, erebî, farisî; qismek ji wan jî, bi tirkî-kurdî, erebî-kurdî ronahiyê dîtine. 35 weşan jî bi zimanên biyanî ango ingilîzî, almanî, swêdî, yewnanî, rûsî û fînî derketine. Ji van weşanan 630 hebên wê bi awayê îllegal jiyana xwe ya weşanê berdewam kirine...”

## Rojnamegeriya Kurdî peywireke îdeolojîk hilda ser milên xwe

Rojnamegerî ji bo kurdan, ne tenê bû qadeke pîşeyî. Her wiha wê peywireke girîng a îdeolojîk û siyasî jî da ser milên xwe. Lewre jî dibe ku ji ber vê sedemê, Rojnamegeriya Kurdî ji aliyê pîşeyî ve bi têra xwe bi pêş neket û negiha cihê ku heq dike. Ligel tevahiya zehmetî, çewisandin, pest-kotekî û sansûrê, rojname û kovarên bi navê Rojî Kurdistan, Hetawî Kurd, Rojî Kurd, Kurdistan, Helale, Hawar, Ronahî, Niştiman, Gelawêj û Hîwa di dem û dewrana xwe de merhaleyên baş bi dest xistine, di qadên çand, ziman û siyasetê de barên ketiye stûyên wan bi layiqî hilgirtine û pêşengiya ronakbîriya kurdan kirine.

Rêje û îstatîstîkên heyî bi me didin nîşandan ku halîhazir li hûndir û derveyî welat bêhtirî 200 kovar û rojnameyên kurdan têne weşandin. Bi tenê li Başûrê Kurdistanê behsa 140 kovar û rojnameyan tê kirin. Kurdistanî Nwe, Birayetî, Xebat, Raman, Sixurme û Gelawêj ji wan bi tenê çend nav in. Li bakurê welêt, Azadiya Welat, Zend, Nûbihar, Rewşenname, Tîroj, Vesta, Çirûsk, Hinar, Nûbîn; li rojhilat ango li Kurdistana Îranê Zirebar, Sirwe, Awêne; li Kurdistana Suriyeyê Pirs, Zanîn; li derveyî welat jî Kurd, Peyam, Hîwa, Seko, Kurdistanî Îmro, Amara çend navên girîng in ku çend nav ne di nav de, piraniya wan heta niha jî weşana xwe berdewam dikin. Tevahiya weşanên min li jorê navên wan da, bi latînî an jî bi alfabeya erebî lê bi zimanê kurdî têne weşandin û dihatin weşandin. Dihatin weşandin dibêjim, ji ber ku çendek ji wan weşanan îro dernakevin.

## Rûdaw û Le Monde Diplomatique Kurdî

Rûdaw û Le Monde Diplomatique Kurdî jî du rojnameyên diaspora kurdî ne. Rojnameya Rûdawê ku li Hewlêra Paytexta Kurdistana Federal ronahî dît, bi vê hejmara 41’ê, bi çapa xwe ya Ewrûpayê ku li Kölnê derdikeve, ji çar parçeyên Kurdistanê deng û behsên kurdan, tevî siyaset, çand, edebiyat û magazîna wan tîne nêv mala me.

Le Monde Diplomatique Kurdî di Mijdar a 2009’an de hejmara xwe ya yekem belav kir. Rojnameya ku li Kurdistana Federal çapa xwe bi zaravayê soranî dike, li Ewrûpayê bi zaravayê kurmancî xwe digihîne ber destê xwendevanên xwe. Her wekî Rûdawê, Le Monde Diplomatique Kurdî jî 32 rûpel xwerû bi kurdî derdikeve. Şayanê gotinê ye ku rojnameya navdar a fransî, zimanê kurdî jî di nav de, li 46 welatan bi 25 zimanan tê weşandin û tîraja wê li dor 2 milyon û nîv e.

## Azmûna Sovyetê û Rojnameya Riya Teze

Helbet gava em behsa deverên ku kurd lê niştecih bûne bikin, em nikarin berê xwe ji Ermenîstan û Gurcistanê bidin alî. Bi taybetî kurdên ku piştî salên 1915’ê ji dorhêlên Agirî-Qers-Bedlîs-Sason û Wanê, berê xwe dan aliyê din ê Çiyayê Araratê, Çemê Arasê û herêmên Erîvan û Tiblîsê bi cih û war bûn, bi piştevaniya Sovyeta Sosyalîst di warê çand, huner, edebiyat û zimên de gavên mezin avêtin û karên hêja pêk anîn. Ligel ku dema wê ya weşanê kurt jî bûye, “Beşê Kurdî yê Radyoya Erîvanê” ji sala 1955’an heta niha pêlên xwe digihîne nav malên kurdan.

Li hêla din Rojnameya “Riya Teze” ku tevî çerçirandin, tunebûn û zehmetiyên giran, ji sala 1930’yî heta niha 80 sal in weşana xwe berdewam dike, divê ji bo kurdan nîşaneya rûmetê be! Lê hezar mixabin ku sazî-dezgeh û serpereştên kurdan dest navêjin vê rojnameyê, heye ku rojnameya li ber girtinê deriyê xwe heta hetayê dade!

## Alfabeya Erebê Şemo û Îsheq Maragulov

Riya Teze ya ku heta sala 1937’an bi alfabeya latînî weşana xwe kir, paşê bi alfabeya kîrîlî weşana xwe ya kurdî berdewam kir û di destpêka salên 2000’î dîsa rojname derbasî alfabeya latînî bû. Ligel ku îsal 112. salvegera Rojnameya Kurdistan e, her wisa jî îsal 80 saliya Rojnameya Riya Teze ye. Ji ber vê yekê dixwazim behsa serpêhatiya vê rojnameya giranbiha bikim. Divê bidim zanîn ku min beşek ji van agahdariyên li ser Riya Teze di qismek weşanên kurdan û kitêba xwe ya bi navê “Gera Pênûsê” de jî weşand. Em vegerin ser serpêhatiya Rojnameya Riya Teze.

Di sala 1929’an de Erebê Şemo û Îsheq Maragulovê aşûrî bi tîpên latînî dest bi xebata nivîsînê dikin; di dibistan û gundên kurdan de perwerdehiya kurdî didin. Hinek cudahî di navbera alfabeya wan û ya Celadet Bedirxan de heye. Ji ber ku xwendin û nivîsandin wê gavê di nav kurdan de kêm e, pêwîstî bi rojnameyekê heye. Salek şûnde, ango di sala 1930î de, di bin banê dewletê de



Malbata Bedirxaniyan di salên 1880’an li Stenbolê: Yên rûniştî (ji çep berbi rast): Emîn Alî, Ali Şamil Paşa, Bahrî. Yên şipê (ji çep berbi rast): Murat Remzî, Hasan Bedirxan, Miqdad Midhet Bedirxan û Kamil Bedirxan.



Proletared həmu dьnjaje bь çьvьn!

RJA ȚƏZƏ

Seşəm 25 adare 1930 sale

Organ şeWra mьlate bcuk I komisariata mьarьfje Ermənistane u komita əlьfbaje təzə kyrmançi

№ 1

“Əlifвaje təzə I şərqe inglaвəkə məzьnə„ (Lenin)

Inglaвa oktjaвre u əlьfвaje təzə

TƏBRIK

Bergê hejmara yekemîn a rojnameya Riya Taze

Rojnameya Riya Teze li Erîvanê dest bi weşana xwe dike. Ji ber ku ji nav kurdan kesên serwerî bikin nîn in, heta sala 1934'an rojname di bin rêveberiya ermeniyên bi navê Gevork Parîs, Hraçya Koçar û Harûçî Migirdiçyan, ên ku fermalûyên Anatolî û Mezopotamyayê ne û baş bi kurdî dizanin, derdikeve. Piştî berpirsiyariya her sê kesên ermen, êdî ji sala 1934'an û pêve berpirsiyarî dikeve destên kurdan. Ji sala 1934'an heta 1937'an Cêrdoyê Genco berpirsiyariya rojnameyê kiriye.

## Radyoya kurdî ya Êrîvane

Di sala 1937'an de, dema Stalîn e û şev û roj li kurdan herimî ye. Bi navê kurdî tiştek nayê kirin. Her tişt tê qedexe kirin. Heta 1955'an rewş wisa kambax e ji bo kurdên Ermenistanê. Di sala 1955'an de li gel Radyoya Kurdî û gelek sazî û dezgehan, Riya Teze dîsa ji xwendevanên xwe re dibêje 'Merheba'. Ji sala 1955'an heta 1989'an Mîroyê Esed bi qasî 34 salan berpirsiyariyê dike. Piştre bi qasî sal û nîvekê Tîtalê Efo dibe berpirsiyar. Ji sala 1991'an heta du-sê sal beriya niha jî Emerîkê Serdar berpirsê rojnameyê bû. Lê ji ber sedemên tendirûstiyê, Emerîkê Serdar cihê xwe spartiye Grîşayê Memê. Emerîkê Serdar di sala 1962'an de dikeve nav xebata Riya Teze û nêzî 50 salan xebata xwe berdewam dike.

Riya Teze di dema Yekîtiya Sovyetê de, li Ermenistanê yekem rojnameya kurdî bû. Heta sala 1994'an, di hefteyê de du caran derdiket. Lê niha ji ber sedema aborî ji du-sê mehan carekê derdikeve. Rojname 4 rûpel e. Heta sala 1990'î, ku Sovyet hilweşiya 4 rojnameyên sereke yên Ermenistanê hebûn. Ew jî bi ermenkî, rûsî, azerî û kurdî bûn. Rojnameya bi kurdî Riya Teze bû. Wan çaxan Riya Teze ne tenê li Ermenistanê, her wisa li seranserê Sovyetîstanê belav dibû; diçû Ewrûpa, Emerîka û Kanadayê jî. 4000 heb çap dibû û bi riya abonetiyê hemû jî belav dibûn. Rojname piştî hilweşîna Sovyetê bi tenê li Ermenistanê tê belavkirin û tîraja wê jî daketiye 500'î. Emerîkê Serdar di serdana me de diyar dikir ku ew wê hejmarê jî bêheq li nav gundên kurdan belav dikin. Li odeya biçûk a rojnameyê hîn bibûm ku nûçegihan, ango li gorî bilêvkirina kurdên Erîvanê miqaledar, ango nûçegihanê 50 salî Mirazê Cemal yek bi yek li gundên kurdan digere û rojnameyê belav dike.

Di destpêka salên 2000'î de Rojnameya Riya Teze xebata xwe bi çar kesan berdewam dikir: Emerîkê Serdar (Berpirsiyarê Giştî-Redaktor), Grîşayê Memê (Cîgirê Redaktor), Rizganê Cango (Katibê Cabdar) û Mirazê Cemal (Nûçegihan). Sebaret vê nivîsarê min xwe gihand Dîrokzan-Nivîskar Celîlê Celîl û Şaîr-Nivîskar Eskerê Boyîk û hîn bûm ku niha bi tenê Grîşayê Memê û Mirazê Cemal mane li rojnamê.

Heta hilweşîna Sovyetê, Riya Teze weşana Partiya Komûnîst bûye. Lewma jî wan salan rewşa rojnameyê baş bûye. Grîşayê Memê li avahiya rojnamê diyar kiribû ku di salên Yekîtiya Sovyetê de, ji 14 qatên avahiya ku ew tê de ne, bi qasî qatekê ango 11 ode ji bo wan hatibû terxankirin, lê niha ew di nav du odeyên biçûk de hewl didin ku bijîn. Di heman hevdîtina me de, Emerîkê Serdar jî diyar kiribû ku di dema Sovyetê de 25 xebatkarên wan ên kurd hebûne, lê ew niha mane 4 kes.

Helbet ji bilî vê rojnameyê, kurdên Qefqasyayê bingeha gelek rojname û kovarên din jî avêtine. Bi taybetî di dawiya salên 90'î û destpêka salên 2000'î de çend weşanên kurdan derketine ku navên wan ev in: Welatê Rojê, Mezopotamya, Dostanî û Axîna Welat a ku li Moskovayê derdiket.

## Sê hîmên bingehîn

Bi awayeke giştî em dikarin Rojnamegeriya Kurdî di bin banê sê xalan de kom bikin.

Rojnamegeriya Kurdî ya demên dawî yên Împaratoriya Osmanî û salên destpêkê yên Komara Tirkiyeyê: Di vê serdemê de, bi taybetî piştî kar û xebatên rewşenbîrên kurd ên li Stenbolê gelek kovar û rojname hatine weşandin. Çend kovar û rojnameyên girîng ên wê demê ev bûn; Şark ve Kurdistan 1908, Rojî Kurd 1913, Kurdistan 1918, Jîn 1918.

Serdema ku li Kurdistana Suriyeyê bi "Hawar" û "Ronahî"yê pêk hat: Hawar'a ku ji hêla Celadet Bedirxan ve hate weşandin, di navbera salên 1932-1943'yan de li Şamê weşana xwe berdewam kir.

Serdema piştî 1990'î ku Tevgera Siyasî ya Kurd lez da xebatên xwe: Bi gotineke din, kevneşopiya "Çapemeniya Azad" ku li Tirkiyeyê bi pêş diket. Di vê serdemê de, di serî de Yeni Ülke ya heftane, paşê jî rojnameyên bi navê: Özgür Gündem, Yeni Politika, Demokrasi û Özgür Bakiş yên rojane rastî pest-kotekî û çewisandinên giran hatin. Nûçegihan û nivîskarên van rojnameyên kurdan ku bi tirkî derdiketin, ji hêla hêzên tarî ve hatin qetilkirin, gelekên wan birîndar bûn, îşkence dîtin, seqet man, cezayên giran xwarin an jî terkeserê dinyayê bûn. Tevahiya rojnameyên ku min navên wan da, hatin qedexekirin, cezayên giran xwarin û hatin girtin.

Li hêla din kevneşopiya rojnameyên Welat, Welatê Me û Azadiya Welat ku di sala 1992'yan de destpê kir û min bixwe jî bênavber 8 salan ked lê daye, peywira xwe ya bi navê "Dibistana Kurdî" heta îro jî bi şanazî meşandiye û dimeşîne. Ligel tevahiya van geşedan û pêşketinan, Rojnamegeriya Kurdî ti caran ji nîrê "sirgunê" rizgar nebû. Rojnameyên ku di dîroka çapemeniyê de nav dane, bi piranî li Kahîreyê, Şamê, Stockholmê, Erîvanê, Moskovayê û Stenbolê bang li xwendevanên xwe kirin. Bi hêviya ku Rojnamegeriya Kurdî li Diyarbekirê, Li Silêmaniyeyê, li Mehebadê û li Qamîşloyê gur û geş bibe...

*Hefteya pêş: Nivîsên Prof. Celîlê Celîl û Eskerê Boyik bi helkefta 80 saliya rojnameya Riya Teze. Wekî din: Hevpeyvîna bi Emerîkê Serdar re.*

# Destpêk: Rojnameya Kurdistan

**Zekî Ozmen** Marburg

Di 22'yê Nîsanê de rojnamegeriya kurdî 112 saliya xwe tijî dike. Rojnameya Kurdistan ku di 22'yê Nîsana 1898'an de ji hêla Mîqdat Mîdhat Bedirxan ve hate weşandin, wekî yekem rojnameya kurdan tê dîtin. Her wiha ev roj ji sala 1972'an ve wekî "Roja Rojnamegeriya Kurdî" tê pîrozkirin.

Pêvajoya weşana rojnameya "Kurdistan" ji zehmetiyên sedsala borî yên kurd tê re derbas bûne ne kêmtir e. Mîqdat Mîdhat Bedirxanê kurê Mîrê Botan Bedirxan Beg ku ji ber tedawiya nexweşiyeke di singa xwe de li bajarê Kahîreyê dima, li wî bajarî yekemîn hejmara rojnameyê deranî.

Mîqdat Mîdhat Bedirxan di yekemîn hejmara rojnameya "Kurdistan" de agahdariya ku ew ê ji her hejmareke rojnameyê du hezar rojnameyî ji bo belavkirinê bê pere rêke Kurdistanê dide. Ew her wiha armanca deranîna rojnameya xwe jî wisa bi lêv dike: "Ji bo kurdan teşwîqî xwendin û pîşesaziyê bike, tê derxistin."

Ji bilî vê hevoka li jor, Bedirxan di heman hejmara rojnameyê de bi vî rengî behsa misyona rojnameya wî pê dirabe dike: "Li kuderê mirov fêr dibe, li kuderê medrese û xwendingehên qenc hene, ezê nîşa kurdan bikim. Li kuderê çi şer dibe, dewletên mezin çi dikin, çawa şer dikin, ticaret çawa dibe, ezê hemiyan hikayet bikim. Heta niho kesî rojnameyeka holê nenivîsiye."

Mîqdat Mîdhat Bedirxan bi hejmara yekemîn ya rojnameyê hem ji bo pêşveçûn û hişyarbûnê bang li kurdan kiriye û hem jî di rûpela 4'êmin ya heman hejmarê de girêdana xwe ya bi Siltaneta Osmanî re bi lêv kiriye: "Par dewleta me û yunaniyan şer kirin, şikur ji xwedê re dewleta me karî yunaniyan. Di heyvekê de eskerê îslamê şeş bajarên mezin û ji sedan bêhtir gundên yunaniyan girtin…/… Çiqas misilman li ser dinyayê hebin, hemû alîkariya jin û zaroyên eskerên di vî şerî de hatibin şehîd ketine dikin. Gelî kurdno …/… çiqas ji destê we hat, pere bigihînin hev, bidin muteserif û waliyên xwe û rêkin Stenbolê."

Lê ev gotinên ku diviyabû kêfa osmaniyan bînin, ji bo osmaniyan ne bûn baweriya wê yekê ku Bedirxan girêdayî birêveberiya wan e. Siltan Evdilhemîdê II. ji weşana rojnameya "Kurdistan" bêzar bû û hewla astengkirina weşanê dida.


کردستان
۱۳۱۵
بسم الله الرحمن الرحيم

Evdilrehman Bedirxan — Mîqdad Midhet Bedirxan

Mîqdat Mîdhat Bedirxan pênc hejmarên destpêkê yên rojnameyê li Qahîreyê weşandin û dûre berê xwe da Stenbolê. Wî êdî rojname bi hêviya birayê xwe Evdilrehman Bedirxan ve hişt û ji hejmara 6. heta hejmara dawiyê ya rojnameyê wî weşand.

Sedemê vegera Mîqdat Mîdhat ya Stenbolê, zextên birêveberiya Siltaneta Osmaniyan ya di bin serokatiya Evdilhemîdê II. de bû. Birêveberiya osmanî ji bo vegera wî zextên mezin li ser endamên din yên malbatê yên li Stenbolê kirin û bi vî awayî malbat îqna bû ku Mîqdat Mîdhat gazî vegera Stenbolê bike. Armanca osmaniyan bi vê yekê ew bû ku bi vegera wî dawî li weşana rojnameya Kurdistan were. Lê wî yê pêşiya vegera xwe ya Stonbolê dahatûya rojnameyê misoger bikira û nû vegeriyaba Stenbolê. Wî rojname teslîmî birayê xwe Evdilrehman kir û ji hejmara 6'mîn û pê de birayê wî bû birêveberê rojnameya Kurdistan.

Birayê Mîqdat Mîdhat Bedirxan, Evdilrehman Bedirxan jî dijberekî Siltaneta Osmanî bû û ji ber xebatên wî yên kurdiyatî, di sala 1900'an de bi awayekî xiyabî cezayê girtîgehê yê heta hetayê jê re hate birîn. Wî ji hejmar 6 heta ya 19'an ya rojnameya Kurdistan li Cenevreya Swîsreyê (Genf) deranîn. Hejmarên 20 heta 23 li London, hejmarên 24 heta 29 li Folkstone û hejmarên 30 û ya 31'ê jî dîsa li Cenevreyê deranîn.

Her sê hejmarên rojnameyê yên destpêkê xwerû bi kurdî bûn û digel piraniya naveroka hejmarên din bi kurdî jî be, zimanê osmanî jî dihate bikaranîn. Dîsa hemû hejmarên rojnameyên bi tîpên erebî bûn. Her çiqas armanc ew bû ku rojname bi awayekî perîyodîk her 15 rojan careke derkeve jî, lê di navbera du hejmaran de carnan digihişte mehekî û carnan gelek mehan.

Bi xêra lêkolînên Dr. Kemal Fuad gelek hejmarên rojnameyê ji pirtûkgehên biyanî hatin peydakirin. Cara yekemîn di sala 1972'an da Dr. Kemal Fuad piraniya hejmarên Kurdistanê bi dest xistin û li Bexdayê çap kirin. Her wiha di sala 2005'an de li Qahîreyê û herî dawî jî di 2006'an li Tehranê piraniya hejmarên vê rojnameyê wekî cîld hatin weşandin. Ji bilî hejmara 19'mîn ya rojnameya Kurdistan, heta niha hemû hejmarên wê ji arşîvên cure yên navneteweyî hatiye peydakirin.

## Çapemeniya cîhanê

AFTENPOSTEN

### Li Tayland îhtîmala darbeyeke leşkerî zêde ye

Rojnameya norwecî Aftenposten derbarê çalakiyên siyasî yên li Tayland dinivîse: “Alîgirên Serokwezîrê berê yê Tayland, Taksin Şinavatra, çalakiyên xwe yên li dijî desthilatdaran didomînin. Di dawiya heftiyê de bi mudaxeleya artêşê alozî derket û di aloziyê de 4 leşker û herî kêm 21 kesan jiyana xwe ji dest dan û nêzîkî 800 kesan jî birîndar bûn. Êdî çalakiyên li dijî desthilatdariyê kete qonaxeke xeter. Alîgiran heta niha xwestin ku bi çalakiyên xwe bêyî şîdetê bidomînin, lê bi vê mudaxeleye êdî wê çawa li hev bên? Di demeke kin de alîgirên muxalîf nikarin desthilatdariyê têxin destê xwe. Li welat nearamî didome û ev rewş dibe sedema îhtimala darbeyeke leşkerî. Artêş di nava 80 salan de nêzîka 20 caran desthilatdarî xiste destê xwe. Dibe ku carek din jî wisa bike.”

FRANKFURTER ALLGEMEINE

### Sala aramiya Afganistanê

Wezîrê Parastinê yê Almanya daxuyanî da û got ku ji bo Afganistanê sala 2010’an wê bibe sala aramiyê. Di dema dawiya erka taybetî de, daxwaz ew e ku hinek encam bên standin. Piştî du hefte ji Cejna Vejîna Îsa û vir ve 4 leşkerên alman jiyana xwe ji dest dan. Wezîrê Parastinê Karl-Theodor zu Guttenberg ew leşker jî bi bîr anîn. Lê divê Almanya ji Afganîstanê paşde vegere. Êdî heta kengî Almanya wê li ber xwe bide. Wekî ku Wezîrê Derve gotibû, bi rastî jî li paş leşkeran lihevhatinek heye? Ji bilî wan tiştan, ji bo rizgarkirina perçeyeke axa Afganîstanê ne pewîste ku em zêde li wir bimînin. Vê yekê Talîban jî dizane.

DAGENS NYHETER

### Serfirzî ya Obama ye

Rojnameya lîberal a swêdî Dagens Nyheter, Civîna Ewlekariyê ya Nûklerî wekî serfiraziya Barack Obama nirxand: “Berî her tiştî, Konferansa Ewlekariyê ya Nûklerî mirov dikarê wek serfiraziyekî Serokê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê Barack Obama binirxînê. Wekî piştgiriya welatên ku dixwazin çekên kîmyewî kêm bikin, Obama civîn bi aliyekî erênî gûhert. DYA û welatên din dilsoziya xwe ji bo kêmkirina çekên kîmyevî nîşan dan. Lê belê tê hevî kirin ku ev civîn bandora xwe li ser welatên ku tevlî vê civînê nebûye jî bike.”

Ji bo astengkirina tûrîzma hemwelatîbûnê

# Belçîka qanûnên xwe dişidîne

**Nurettin Akad**

Li Belçîkayê bidestxistina hemwelatîbûnê êdî weke berê ne hêsan e. Ji bo qanûna hemwelatîbûnê ya heyî were şidandin, Wezîrê Dadê yê Belçîkayê pêşniyazqanûnek bi hikûmetê da qebûlkirin.

Daxûyaniya derbarê mijarê de Wezîrê Dadê yê Belçîkayê Stefaan De Clerck (CD&V) da. Li gorî daxûyaniyê, hikûmeta federal ji bo zehmetkirina “qanûna hemwelatîbûnê ya prosedûra zû” li hev hatiye. Di hinek rewşan de jî wê mafê hemwelatîbûnê karibe paş ve were stendin. Di pêşniyazqanûna ku Wezîrê Dadê Stefaan De Clerck bi hikûmetê daye dengdan, ji bo kesên ku bixwazin derbasî hemwelatîbûna Belçîkayê bibin, şertên pêş tên danîn. Berê ji bo serîlêdana hemwelatîbûnê diviyabû mirov herî kêm 3 salan bi fermî li Belçîkayê bimaya. Niha ev dem dibe 5 sal. Her wiha berendamê hemwelatîtiya Belçîkayê divê xwedî belgeyeke rûniştinê ya fermî be û divê nîşan bide ku ew întegreyî civaka Belçîkayê bûye. Wekî din wê ji berendaman were xwestin ku yan zimanê flamanî û yan jî zimanê fransî karibe biaxive.

Bi vê sererastkirina nû re, ji bo bidestxistina hemwelatiya Belçîkayê, êdî wê ji dervehî vî welatî serlêdan nikaribe werin kirin. Kesên ku zewaca sixte û yan jî welatîtiya Belçîkayê xirab bi kar bînin, wê hemwelatîbûna wan ji destê wan were stendin. Pêşniyazqanûn ji aliyê partiyên desthilatdar ên Lîberal û Xiristiyan Demokratan ve bi erênî hate pêşwazîkirin, lê belê mûxalefeta belçîkî van gavan têr nabîne û pêşniyazqanûnê wekî “nerm” nîrxand.




**Hemwelatiya Belçîkayê dikare şûnde were standin**

# Xortên kurd û tirk ji leşkeriyê direvin

## Salane 5 hezar xort ji bo neçûna leşkeriya Tirkiyeyê, ji hemwelatiya tirk derdikevin

**Köln -** Kurd û tirkên ku li Almanya ji dayîk dibin û di navbera du kulturan de dijîn, wek welatê yekem Almanya hildibijêrin. Di bijartina hemwelatiyê de jî dîsa Almanya wek yekem dibijêrin, ji hemwelatiya Tirkiyê derdikevin û dibin hemwelatiyên Almanya.

Li gora zagonên Almanyayê, zarokên ku bi koka xwe ji Tirkiyê ne lê li Almanya hatine dinyayê, heta 23 saliya xwe karin wek hemwelatiyên du dewletan bimînin. Lê herî dereng heta 23 salan gerek ew kes biryara xwe ya hemwelatiyê bidin û welatekî ji xwe re hilbijêrin. Hemwelatiya Tirkiyê yan jî Almanya.

Li gora ku rojnama Süddeutsche Zeitung (SZ) lê kolaye, derketiye holê ku zarokên ji Tirkiyê (kurd û tirk) ji ber ku li Almanya çêbûne û li Almanya mecbûriyeta çûna leşkeriyê tune ye, ji hemwelatiya Tirkiyê derdikevin û derbasî hemwelatiya Almanya dibin. Rojnama Süddeutsche Zeitung radigihîne ku “mecbûriyeta çûna leşkeriyê xortan ji hemwelatiya Tirkiyê sar dike û ew xort berî ku 23 saliya xwe dagirin jî, ji hemwelatiya Tirkiyê derdikevin û derbasî ya Almanya dibin.“

Li gora rojnameya Süddeutsche Zeitung, her sal nêzîkî pênc hezar xort ji bo ku neçin li Tirkiyê leşkeriyê nekin, ji hemwelatiyê derdikevin û dibin hemwelatiyên Almanya.



**Herî dereng di 23 saliya xwe de dive kesên ji Tirkiyê hemwelatiya alman anjî tirk hilbijêrin**

# General Motors dixwaze vegere rewşa berê

**Köln (Rûdaw) -** Tevî rewşa aborî ya xirab ku şîrketa amerîkî ya otomobîlan General Motors (GM) havîna sala borî rastî hat û tê de bêtirî çar milyar Dolar zirar dît, ew şîrket dixwaze îsal qezencên xwe dubare bike. Cîgirê Rêvebirê Darayî yê General Motors, Chris Liddell, got ”Herçend encamên sala borî wê yekê nîşan didin ku pêwîste hêjî kar bê kirin, lê şansê şîrketa me heye ku em îsal qezencê bike.” Liddell diyar kir ku General Motors pêngavên mezin ji bo kêmkirina xerciyên karkirinê avêtine û hewl tên dayîn ku şîrketê vegerînin rewşa wê ya berê.

Wî berpirsê General Motors eşkere kir ku şîrketa wan dixwaze armanca xwe pêk bîne û deynên xwe yên ku ji Wezareta Xezîneyê standine, bide. Nirxê yek ji wan deynan jî 8.4 milyar Dolar e û li gor plana kar, pêwîste ew deyn heta Hezîrana pêş bê dayîn. Di vî warî de jî di destpêka vê mehê de şîrketa GM ragihand ku di meha Adar a borî de, bi rêjeya ji sedî 20, firotinên otomobîlên wê zêde bûye û dahatiyê wê bûye 57.5 milyar Dolar.

Piştî ku Hikûmeta Amerîka di Tîrhema 2009’an de 52 milyar Dolar deyn ji bo derbaskirina kirîzê dane şîrketa General Motors, hikûmet bûye xwediya ji sedî 61’ê pişkên wê şîrketê.



**Navenda GM li bajarê Detroit**

Parlamenterê BDP'ê Sırrı Sakık piştî êrîşê:

# Ev êrîş êrîşek bêşerefî ye!

Sırrı Sakık di dema erîşa ser Ahmet Türk li cihê bûyerê bû û atmosfera bûyerê ji Rûdawê re vegot



Piştî êrîşa ser Ahmet Türk, Sırrı Sakık gelekî aciz bû

Cerdevan Turan Bilen û birayê wî Metin Bilen, di 15'ê Kanûn a 2009'an de, li navçeya Mûşê, Kopê êrîşî girseya ku girtina DTP şermezar dikirin kiribûn û di encama êrîşê de 2 kes katibûn kuştin. Ji ber giringiya bûyerê û ewlekariyê, doza Turan Bilen û birayê wî rakiribûn Samsûnê.

Ji bo şopandina dozê, di 12'ê Nîsan a 2010'an de wekîlên DTP ên kevn Ahmet Türk û Aysel Tuğluk, wekîlên BDP'ê Sırrı Sakık, Nuri Yaman, Nezir Karabaş û gelek kesên din beşdarî dadgehê bûn. Di derketina dadgehê de Ahmet Türk rastî êrîşa kesekî tirk bi navê Ismail Çelik hat û pozê wî hat şikandin. Di vê derbarê de parlamenterê BDP'ê Sirri Sakik ji me re behsa atmosfer û rewşa bûyerê û bajarê Samsûnê kir.

**Birêz Sakık, di dema êrîşa ser Ahmet Türk de hûn li wê derê bûn. Hûn karin ji me re behsa bûyerê bikin?**

Em bi minasebeta şopandina qatilên bûyera Kopê hatibûn bajarê Samsûnê. Gerçî ji ber ku doz rakiribûn bajarê Samsûnê, kêm zêde me texmîn dikir wê êrîş bên kirin. Ji ber vê ez, Ahmet Türk, Aysel Tuğluk, Nizami Yaman, Bedri Karataş, parêzer û malbatên kuştiyan çûn bajarê Samsûnê. Di rastiyê de ji destpêka ketina bajêr û heta bi ketina hundurê dadgehê êrîşan dest pê kir. Ango gava em ketin dadgehê jî êrîşên devkî nesekinîn. Ez zîvirîm û min ji polîsan re got da ku midaxele bikin û erka xwe pêk bînin, lê midaxele nehat kirin.

## "Polîsan jî êrîşî me kirin"

Gava em ji dadgehê derketin jî êrîşên devkî dewam kirin. Ez wê gavê bi malbatên mexdûran ve dadiketim û ji bo ez rê li ber wan bixim, gavekê li paş bûm. Di wê demê de êrîşî birêz Ahmet Türk kirin. Gerçî me berî polîsan rê li ber êrîşkar girt. Balkêş e, piştî me êrîşkar bêmefer hişt, em raserî êrîşa polîsan hatin. Cama trimbêla me bi telsiza polîsan hat hat şikandin, hevalê m yê polîs derb xwar, mirovên li gel me lêdan xwarin, ango em raserî êrîşan hatin û êrîşkar jî polîs bi xwe bûn. Ez vê yekê ji temamê awira gelemperî re dibêjim ku polîsan êrîşî me kir.

**Birêz Sakık, emniyeta Samsûnê qatilê Hrant Dink Ogun Samast wek qehreman îlan kiribû û pê re wêne jî kişandibûn...**

Eynen wisa ye, tam minê bigota lê we anî zimên. Berê, ango kesên ku bi qatilê birêz Dink re wêne kişandibûn polîsên Bûrsayê bûn. Ji ber vê, li vir nêzîkbûnek bi plan û proje hebû. Ev bûyer ji bo ku peçûna navbera gelan germtir bibe hat kirin. Em dixwazin ku hêzên li pişt vê çalakiyê rojek berî rojekê bên eşkerekirin. Em zanin bê ev derûdor ji ku xwedî dibin û ji kuderê tên. Lê em aqlêselîm in û ji bo pêşeroja gelê xwe xwedî edalet in.

Bila kes vê ji me re nebêje ku ev êrîş "êrîşek kesane" ye. Bila ev êrîş wek êrîşek kesane neyê qebûlkirin. Ev ne êrîşek kesane ye, li vajayî wê êrîşek rêxistinî û plankirî ye. Di kuştina Hrant Dink de jî gotin ev êrîşek kesane ye. Lê bi salan e hêzên tarî ên ku li pişta kuştina Hrant Dink in eşkere nekirine û derneketine holê. Em van kiryaran wek kiryarên hêzên tarî dizanin û dixwazin ew hêz bên darizandin. Ergenekon e, dewleta kûr e, çi û kî dibe bila bibe, divê derkevin holê û bên darizandin. Ev êrîş li biratiya navbera gelan ketiye û çalakiyek provokatîf e.

**Birêz Sakık, çapemeniya tirk dibêje ku axaftina we axaftinek êrîşkar bûye...**

Helbet gava kesên ku kuştinê pêk tînin û lêpirsînê dikin yek bin, wê kesên wek me jî wek provokator bên binavkirin. Binêrin, piştî êrîşî me kirin û birêz Türk di nav xwînê de ma, em êrîşkar bêmefer dikin, polîs êrîşî me dikin û ez jî vedigerim ji wan re dibêjim: bêşerefno!" Binerin, gava hûn cîh li heywanekî jî teng bikin wê ew heywan êrîşî we bike. Em raserî êrîşê tên, piştre ez dibêjim "bêşerefno", lê medya tirk gotinên min serûbin kirin. Îcar li vir çi êrîşkariya min heye? Carekê ez wan dawetî pêkanîna erka xwe dikim, dixwazim ku ew êrîşkar bêmefer bikin lê ew bi xwe jî êrîşî me dikin.

## "Dîsa dibêjim bêşerefno"

Belê, ji kesên ku ji êrîşê re wek temaşevan mane, ji kesên ku êrîşî me kirine û dane êrîşkirin re dîsa dibêjim "bêşerefno". Ya balkêş ev e, min ev gotin piştî êrîşê bi kar aniye. Heger berî êrîşê min ev gotin bi kar baniya, mafê wan hebû. Lê piştî êrîşê hevalê me di nav xwînê de dimîne, derbê dixwe, tên ser me, camên trimbêla me tê şikandin û ez vê gotinê bi kar tînim. Dîsa jî ez li pişt gotina xwe me. Ev êrîşek bêşerefî bû.

Medya tirk ji kujeran hez dike. Em wan jî dinasin, manşetên wan, nivîsên wan, em baş zanin bê ew dixwazin kê biparêzin. Di bûyera Hrant Dink de jî wilo bû. Ji xwe hinek dixwazin kujer û êrîşkaran biparêzin. Di ketine hundur de bi devkî êrîşî me kirin, heqaret hatin kirin û min li wir ji polîsan re got "van bê edeban bêdeng bikin." Kuderê vê gotinê êrîş e? Azadiya çapemeniyê li ku ye, wekhevî û delat li ku dimîne? Belê, ev jî hişmendiya hiqûq û dadmendiya Tirkiyê ye.

**Başe birêz Sakık, gelo wê bûyera Kopê hê jî li bajarê Bursayê bidome yan wê derbasî ciyekî din bibe?**

Êdî ev doz ket rewşek ewqas bi şik û goman ku ez mecbûr mam di dadgehê de helwesta dozger û dadweran şermezar bikim. Heta bi dozger û dadwran jî li hember malbata mexdûran helwest girtine. Me ji roja pêşîn de got ku wê li wêderê edalet û hiqûq tune be. Me gelek mînak dan. Di bûyera Uğur Kaymaz de jî doz ji Qoserê rakirin bajarê Eskişehirê. Wê demê jî malbata Kaymaz raserî êrîşan hatibûn. Piştre bûyerên taxa Gazi ya Stenbolê jî rakirin Trabzonê û heman êrîş pêk hatin. Gava em li dîroka Tirkiyê binerin, bûyerên ku li bajarê Samsunê qewimî ne aşîkar in, hemi tên anîn, bi plan û proje ne. Ji ber vê, bi rastî jî êdî ew doz nikare li Samsunê bê domandin. Heger hiqûq û edalet bê xwestin, gerek ev doz li Mûşê jî û li navenda Enqerê jî bihata meşandin. Samsun ji bo vê dozê ne ciyekî ewle ye. Êdî em ê beşdarî dozên li Samsunê nebin, xwe û nirxên xwe nehin bin lingan. Emê li mafê xwe yê hiqûqî bigerin.

**Birêz Sakik, di dawiyê de hûn dixwazin tiştekî lê zêde bikin?**

Belê, gelê me daxwazên xwe yên demokratîk derxistiye holê. Êrîşa li hember birêz Türk ji alî temamê mirovên ku wîjdan, edalet û demokrasiyê dixwazin ve hatiye rûreşkirin. Em bawerin, ev êrîşek provokatîf e, bi armanca jihevdexistina biratiya gelan hatiye pêkanîn. Lê em bawerin vê provokasyonên bi vî rengî ji alî xelkên me ve bên pûçkirin. Binêrin buhar hat, xweza ji nûjeniyan re himbêz vekiriye, her der bi çîçekan xemilî û roj bi şewatir e. Be hêviya xwe ji buharê re veşart. Bila buhar di dîroka gelê me de rûpelek nû binivîse. Lê bila ne hêstirên çavan, jan û pevçûnan, lê biratî, edalet û aştiyê binivîse. Bila ev buhar bibe buhara gelan...

**Birêz Sakık, xuyaye navbera we û edebiyatê baş e, em buharek xweş ji we re dixwazin..**

(Dikene) Spas dikim. Ez jî ji we û hevalên we re buharek xweş hêvî dikim,serketin...

**Hevpeyvîn: Medya Deniz**

**"Binêrin, piştî êrîşî me kirin û birêz Türk di nav xwînê de ma, em êrîşkar bêmefer dikin, polîs êrîşî me dikin û ez jî vedigerim ji wan re dibêjim: bêşerefno!"**

**"Berê, ango kesên ku bi qatilê birêz Dink re wêne kişandibûn polîsên Bûrsayê bûn. Ji ber vê, li vir nêzîkbûnek bi plan û proje hebû."**

## Di derbarê êrîşê de kê çi got?

**Ahmet Türk:** "Ev êrîş li dijî aştî, demokrasî û biratiyê hatiye kirin."

**Serokwezîr Erdoğan:** "Ev êrîş li dijî biratî, demokrasî û pêşketina Tirkiyê hatiye kirin. Ji birêz Türk re selametiyê dixwazim."

**Cîhgirê Serokwezîr Bülent Arınç:** "Pir xemgîn im. Hem wek siyasetmedar û hem jî wek mirov vê êrîşa pîs şermezar dikim."

**Serokê CHP Deniz Baykal:** "Pir li ber ketim, gerek di siyasetê de cîh ji şîdet û terorê re tune be."

**Wezîrê Navxweyî Beşir Atalay:** "Êrîşek rûreşî ye. Bi vê êrîşê dixwazin rê li ber aştî û demokrasiyê bigrin."

**Cîhgirê serokwezîr Hüseyin Çelik:** "Ev êrîş li aramî û aştiya Tirkiyê hatiye kirin."

**Serokê MHP Devlet Bahçeli:** "Ez êrîşên li dijî siyasetmedaran şermezar dikim."

**Şaredarê Amedê Osman Baydemir:** "Kurdan ti carî serî li ber êrîşan netewandiye. Dînên Samsunê hene, dînên Amed û Colemêrgê jî hene."



Konferansa partîyanê sîyasîyan yê Kurdîstanê Rojhelatî Hewlêr de virazîya

# Konferansa sîyasetvananê kurdanê Kurdîstanê Rojhelatî

**Hewlêr (Rûdaw) -** Partîyê kurdan yê Kurdîstanê Rojhelatî roja 14.04.2010 de paytextê Kurdîstanê Başûrî Hewlêr de bi sernameyê "Vurîyayîşanê Îranî de îstîqbalê meselaya kurdan" yew konferansa ke di rojî dewam kerde virazîya.

Goreyê malumatê ke keyepelê AKnewsî dano, Kurdîstanê Rojhelatî ra gelek sîyasetvanê kurdan beşdarê konferanse bîyê. Babetê sey bîyayîşê ke badê weçînayîşê serekkomarê Îranî qewimîyayê û yewbîyayîşê xîtabetê partîyanê sîyasîyan yê Kurdîstanê Rojhelatî konferanse de munaqeşe bîyê. Beşdaranê konferanse dayo zanayîş, seba ke xîtabê kurdan bibo yew konferanse de zemînêko musbet yê dîyalogî virazîyayo.

Cagirewtoxê serekê Partîya Azadîya Kurdîstanî Huseyn Yezdanpenah, sekreterê pêroyî yê Partîya Demokrate yê Kurdîstanê Îranî Mistefa Hicrî, karbidestanê Komela Zehmetkêşanê Şorişgeran yê Kurdîstanê Îranî ra Mehemed Şafiî zî beşdarê konferanse bîyê.

Cagirewtoxê serekê Partîya Azadîya Kurdîstanî Huseyn Yezdanpenahî beyanatê xo de va, "Bi amancê ke ma hemkarîya mîyanê partîyanê kurdanê Îranî de xurt bikerin û vera îqtîdarê Îranî de xîtabêko yewbîyaye yê kurdan pêbîyarin, ma na konferanse organîze kerde. Konferanse de, bîyayîşê ke badê weçînayîşê serekkomarê Îranî de qewimîyayê zî tede, ma gelek babetê muhîmî munaqeşe kerdîy."

# Malmîsanijî ra kitabêko newe

Kitabêkê bîn ê ziwannas, cigêrayox û nuştoxê kurdan Malmîsanijî "Yirminci Yüzyılın Başında Diyakrbekir'de Kürt Ulusçuluğu (1900-1920) (Destpêkê Seserra Vîstine de Dîyarbekir de Neteweperwerîya Kurdan (1900-1920))" hetê Weşanxaneyê Vateyî ra neşr û vila bi.

Vateyê verên ê kitabî de wina yeno vatiş: "Roja ewroyî de Dîyarbekir şaristanê tewr muhîm ê hereketê neteweyî yê kurdan o. Seba ke merdim hereketê neteweyî yê kurdan hol bişinasno ganî merdim bala xo bido tarîxê ey ê nê şaristanî ser. Sere de nê şaristanî de rewşa nê hereketî senî bîye û senî aver şîye? Gama ke hereketê organîzekerde yê neteweyî yê kurdan dest pêkerd kamcîn hêzî vera (duştê) ey vejîyayî?" Badê ke nê persî persîyenê, wina yeno vatiş: "... Na xebate de apey agêrîyeno heta destpêkê seserra vîyartîye û cewabê nê persan dîyeno."




Malmîsanij, Yirminci Yüzyılın Başında Diyarbekir'de Kürt Ulusçuluğu (1900-1920), Weşanxanê Vateyî, Îstanbul 2010, 159 rîpel

Malmîsanij destpêkê qismê netîceya kitabî de vano: "Peynîya na xebate de qenaetanê ke mi rê virazîyayî ra yew no yo ke roşnvîrê kurdan ê ke lehçeya kirdkî (zazakî) qisey kenê, bitaybetî merheleya verêne ya neteweperwerîya kurdan de rolêko muhîm kay kerdo." Peynîya qismê netîce de zî tesbîtêko winasî keno: "... Eke ser nêkewê zî xebatanê ê wextî mintiqa de rêç û kadroyê muhîmî xo ra pey verdayê. Eke roja ewroyî Dîyarbekir hereketê neteweperwerîya kurdan de wayîrê cayêkê muhîmî yo, kokê xo reseno ê xebatan. Heto bîn ra, îdareyê dewlete, serranê badê ê wextî de Dîyarbekir de ca dano dezge û nîzamê xo. Seba ke sîstemê fikr û erjanê kemalîstî bi şarê kurdî yê nê cayan bido qebulkerdiş dest ra çi yeno texsîr nêkeno la winî fehm beno ke hewna zî nêşayo ser kewo."

Hûmara kitabanê neşrbîyayeyan ê Malmîsanijî, bi nê kitabî ra bîye 28. Kitabê ke Weşanxaneyê Vateyî weşanayî zî bi nê kitabî ra resaye 50.

# Tomografî qanser virazeno



Tomografî zaf zêde radyasyon vila keno û nêweşîya qanserî virazeno

**Londra (Rûdaw) -** Wezaretê tenduristîye yê Îngilîstanî roja 06.04.2010 de qerarêko zaf muhîm girewt ke ganî kesê bisihetî tomografî nêancê. Sedemê qedexekerdişê tomografî no yo ke, demeyê antişê tomografî de radyosyonêko zaf zêde vila beno.

Naye ra ver, nêweşîyê sey qelbî, osteoropoz, xetimîyayîşê damaran û dîyabetî, seba ke rew tesbît bibê, doktoran tomografî tercîh kerdêne. Hetanî nika pisporanê tenduristîye pêşnîyaz kerdêne ke her panc serran ra reyêke tomografîyo ke hemeyê wucûdî sehneno, bîyero antiş. Labelê nika tesbît bîyo ke tomografî rontgenêkê normalî ra 400 qat vêşêr radyasyon vila keno. Coka Îngilîstan de qerarê qedexekerdişê tomografî gêrîyayo. Çunke mîyanê nêweşanê ke tim dekewenê tomografî de, rîyê radyosyonî ra 50 kesan ra yewêk de nêweşîya rîşa merdimwere (qanser) peyda bena.

Goreyê raporanê ke derheqê na babete de ameyê weşanayîş, merdimanê ke pêsero kewno tomografê de radyasyono ke yeno pêser, qasê radyasyono merdimanê ke Hîroşîma û Nakazagî birîndar felitîyay ra vêşêr o. Seke yeno zanayîş, şerê cîyanî yê diyine de bombaya atomî erzîyabî bi şaristananê Japonya Hîroşîma û Nakazagî.

Pisporî vanê, rontgenêko normal de seba ke fîlmê wucûdî kaşbikero, tena yew tîrêj vila beno la seba fîlmê bidetay yê tomografî têdima zaf rey tîrêjî vila benê. Serra 2009î de unîversîteyê California ra prof. Rebecca Smith-Bindman 1.119 kesan ser o yew cigêrayîş viraşto. Goreyê netîceyê nê cigêrayîşî ra, 1 rey tomografî qasê 442 rey rontgenanê fîlmê sêneyî û 74 mamografî (fîlmê çicikan) ra vêşêr radyasyon vila keno.

# Êdî propagandaya bi kurdkî serbest a

**Anqera (Rûdaw) -** Goreyê vurnayîşê ke "Qanûnê Derheqê Hukmê Bingeyinî yê Weçînayîşan û Qeydê Raydayoxan" û "Qanûnê Weçînayîşê Parlementeran" de virazîya û hûmara 27548 yê rojnemayê Resmî yê Tirkîya ke roja 10.04.2010 de weşanîya, êdî partîyê sîyasî şênî bi ziwananê teberê tirkî de zî propapaganda bikerê.

Seke yeno zanayîş hetanî nika Tirkîya de ziwanê tirkî ra teber bi sewbîna ziwanan propagandaya sîyasî qedexe bî. Nê semedî zafê sîyasetkaranê kurdan ceza girewtêne.

Weçînayîşan de ganî tirkî sey ziwanê bingeyînî bo la propaganda, îlanî, afîşî şênî bi ziwananê teberê tirkî de zî bibê.

Badê resmîbîyayîşê nê qanûnî, mehkemeyê ke nê derheqî de dewam kenê do betal bibê.

# Enfal... Pêwîste ew konsert bi dawî bê

**HEKIM KAKEWEYS***



Her sal em bi yek-du dilopên rondikan, enfalan bi bîr tînin û bi rê dikin. Berpirs jî bi pesindayîna kesûkarên enfalkiriyan û bi axaftinên bê bac û encam, serdana wan dikin û sozên şirîn pêşkêşî wan dikin. Ew hewl didin kesûkarên enfalkiriyan bikin serweriyên miletekî cilreş, sembola gelekî birçî û sedema zengînbûna berpirsan û mayîna desthilata desthilatdaran. Beşek ji post û samanan jî, bûne behra enfalçiyên ku sedema malwêraniya kesûkarên enfalkiriyan ew in.

Lê îsal bîranîna enfalan hinekî cuda bû. Rojekê beriya wê boneyê, cenazeyên bêtirî sed zarok û 2 jinên enfalkirî gihandin bajarê Çemçemalê. Tiştê ku hinekî dilê min xweş kir jî, helwesta hin berpirs û saziyên medyayê bû. Yek ji wan jî axaftinên Nêçîrvan Barzanî bûn. Ew axaftin ji min re taze bûn, pir taze û wêrek bûn. Gilîkirina li dewletên erebî û îslamî yên ku li hember enfalkirina kurdan bêdeng mabûn an jî destê wan tê de hebû, tiştekî nû bû.

Vê carê Nêçîrvan Barzanî dengê nerazîbûnê nîşan da û gilî kir. Ji vê jî giringtir ew bû ku wî daxwaz kir kurd naskirina enfalan li gel aliyên Îraqê wek cenosîda gelê kurd bikin merca yekemîn. Bi baweriya min ew axaftinên Nêçîrvan ji bo diyarkirina helwestan pêşketinek mezin bû. Ew nîşana rabûna xîreta kurdan bû ku bi zimanê siyasetvanekî bilind ê kurd hat ragihandin.

Ez hêvîdarim ku em enfalan nekin stûyê Baasiyan bi tenê, ji ber ku beriya Partiya Baas bi çend sed salan em tên enfalkirin. Xweziya me ji bo wê yekê xebat bikira ku em

> “Ji vê jî giringtir ew bû ku wî daxwaz kir kurd naskirina enfalan li gel aliyên Îraqê wek cenosîda gelê kurd bikin merca yekemîn. Bi baweriya min ew axaftinên Nêçîrvan ji bo diyarkirina helwestan pêşketinek mezin bû.”

Qaqa [serleşkerekî misilmanan di dema hatina wan bo Mesopotamya] ji kûratiya dîrokê derxînin û li ser enfalkirina kurdan wî dadgeh bikin, da bi navê hemû erebên cihanî daxwaza lêborînê bike. Xweziya ku bi dehan hezaran keçên kurdên ku li pêş û paş dema Emewiyan hatine enfalkirin, me anîbûna dadgehê û bibûna şahidên wan tawanan. Bi rastî peywendiya wan karan bi olê ve tune, lê ew girêdayî xwesteka hovîtiya wan kesan e ku êriş anîne ser kurdan û destê wan gihaye Kurdistanê.

Hêla hevbeş a navbera me û dagîrkerên vî beşê Kurdistanê enfal û xwîn e. Ji kesatiyek wek Nêçîrvan Barzanî jî tê çaverêkirin ku ew wan di navbera urfên wan ên enfal û êrişkirinê û urfa aşitîxwaziya kurdî ku bostekê jî neçûye ser axa ti miletan, bike hêlên cudakar. Bi rastî enfal tawanek têra wê yekê dike ku dewleta kurdî pê bê ragihandin. Lê kurd bi xwe naxwaze wê mijarê pêşde bibe û bike keresteya rizgarbûna neteweyekî.

Bîranîna enfalan, bîranîna wan zordariyan e ku li kurdan hatine kirin. Dîrok di gel kurdan dilovan nebû û kurd bi xwe jî di gel xwe dilovan nebûn. Niha jî dem hatiye em ji kesên hemberî xwe re bibêjin, yan hinekî mirovantiyê nîşan bidin an jî her kes ji me bila li mala xwe be! Ji xwe em çi ji wan re bikin, em nikarin wek Selahedînê Eyûbî bikin ku niha neviyên wî tên enfalkirin!

Bi baweriya min divê em hê jî eşkeretir û vekirîtir baxivin: Di gel dirustbûna Îraqê, konserta nû ya xwîna me û gûzan (Gillette) ku wan dest pê kiriye, pêwîste ew konsert bi dawî bê!

**Ev nivîs hatiye kurtkirin. Tevaya nivîsê di beşa soranî de hatiye çapkirin.**

** Hekîm Kakeweys nivîskarekî ji Başûrê Kurdistanê ye*

Derbarê Dahatûya Îraqê

# Destê Washington û cîranên Îraqê li ser dilê wan e

**ZVI BAREL***



Dema Serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî di hilbijartinên meha borî de şikest, navbirî ragihand: “Em bi ti awayan van encaman qebûl nakin.” Dadgehê jî biryar da ku erkê pêkanîna hikûmetê dide kesê ku dikare jimarek herî zêde ya lîsteyan kom bike û hevpeymaniyê pêk bîne. Bi vî awayî Malikî bidestveanîna 89 kursiyan di pileya dûyem de tê. Lê dibe ew bi xwe bibe serokwezîr ji dêlva Eyad Elawî ku di hilbijartinan de di pileya yekem de hat û 91 kursî bi destve anîn.

Lê ev aloziya siyasî û yasayî nikare serkeftina hilbijartinan veşêre. Di hikûmeta nû de, ne Amerîka yan Komara Îslamî ya Îranê, lê belê gelê Îraqê çavkaniya desthilatê tê hesibandin. Bi awayekî sergirtî, Îran û Amerîka di hilbijartinan de pir çalak bûn. Malikî, herwiha hinek berpirsên koalîsyona Elawî jî seredana Tehranê kirin û herdu aliyan piştevaniya Îranê bo pêkanîna hikûmetê wergirtin.

Hilbijartinên demokratîk ên Îraqê, ku yek ji welatên pir kêm e li navçeya Rojhilata Navîn û encamên hilbijartinan lê pêşwext ne diyar in, pirsa ku divê bê kirin: Kî li Îraqê hikûmetê pêk tîne û gelo wê di rêvebirina Îraqê de serkeftî be yan na?

Piştî hilbijartinên 2005’an, Îraq ket hundirê şerê mezhebî û bi sedan hezar Îraqî hatin kuştin. Lê hewldanên cidî yên artêşa Amerîka bi hevkariya artêşa nû ya Îraqê aramiyeke nazik di van çend salên borî de dirust kir, lê hê zû ye bê gotin metirsî nemaye.

Amerîka di rewşek dijwar de ye, ka wê piştevaniya kijan alî bike. Di havîna 2007’an

> “Divê ew dilê kurdan bixin cîh û madeya 140’î ya destûra Îraqê cîbicîh bikin. Lê di heman demê de, her kesê ku soza çareserkirina Kerkûkê bide kurdan, wê piştgiriya suniyan ji dest bide”

de, Wezîra Derve ya Amerîka Hillary Clinton ragihand: “Divê Malikî bê dûrxistin û kesekî din ku li ser bingeha mezhebî kar neke, bikeve dewsa wî.” Dûre, George Bush pesnê Malikî da. Malikî karîye zora Muqteda Sedir ê serhildêr û şîî ku li jêr bandora Îranê ye, bibe. Herwiha, Malikî karîbû rûbirûyê Al-Qaîde bibe, hevkariya artêşa Amerîka kir û di dawî de peymanek ewlekarî li gel Amerîka mohr kir.

Dema Barack Obama hat ser desthilatê, rexne neman û daxwaza dûrxistina Malikî li Washingtonê nema, lê berevajî vê yekê li Îraqê ev daxwazî zêde bû. Malikî li Îraqê bi gendeliyê hat tohmetbarkirin û hat gotin ku hikûmeta wî nikare rewşa aborî ya Îraqê baştir bike.

Elawî şîî’yekî sekûler e û nêzîkî 30 salan li Brîtanya jiyaye. Elawî li Brîtanya plana hilweşandina rêjîma Saddam Husên li gel hêzên îstîxbaratên Brîtanya danî. Bê guman, ger Elawî bikare hikûmetekê pêk bîne wê Amerîka kêfxweş bibe.

Encamên hilbijartinan senaryoyek siyasî ya aloz dirust kir ku dive herdu berbijar razî bin hinek aliyan nêzîkî hev bikin û hevbendiyê dirust bikin. Wek mînak, divê ew dilê kurdan bixin cîh û madeya 140’î ya destûra Îraqê cîbicîh bikin. Lê di heman demê de, her kesê ku soza çareserkirina Kerkûkê bide kurdan, wê piştgiriya suniyan ji dest bide.

Dibe ku hikûmetek lawaz bê dirustkirin û rastî pirsgirêkek dijwar a ewlekariyê bibe. Nemaze piştî vekişandina sed hezar leşkerên Amerîkî ji Îraqê.

Heta niha me raya Îranê ne bihîstiye. Li Washingtonê jî serê neynûkên xwe dixwin, ji ber ku derketina demokrasiyê li ser hêzek dagirker berhemek metirsîdar e.

** Zvi Barel nivîskarekî îsraîlî û şîrovekerê rojnameya îsraîlî Haaretz e*

Ji Rojnameya Haaretz a Îsrailî hatiye wergirtin.

## Ji Xwîneran

### Kêmatiyan nehêl in

Helbet Rûdaw ji gelek rojnameyên din ên kurdî cuda ye û ez bawerim ku her kes wê yekê têbînî dike. Cudahiya wê jî ew e ku naveroka rapor û nivîsên Rûdawê têr û dewlemend in. Sedema wê yekê jî, bi baweriya min, ew e ku Rûdaw bi xwe wan babetan amade dike, lê ne ji cihên din digire. Lê mixabin kêmatiyeke mezin heye û pir caran em dibînin ku wêneyên di Rûdawê de tên belavekirin, tarî ne û hin caran jî kalîteya wan jî gelek xerab e. Ev tişt jî cudahîbûna Rûdawê têk dide û rûyê dewlemendiya mijarên wê jî vedişêr e. Vêca sedema wê yekê wênegir, dizayner yan çapxaneye be, divê Rûdaw hewl bide wê kêmatiyê nehêle.

Tevî silavên bi hurmet.

**Navîn Baş**

### Henek xweş in, lê...

Ev çend meh in çapa Ewrûpa ya rojnameya Rûdaw derdikeve. Bi qasî ku min ew rojname dîtî û li gor wan nivîs û mijarên cur bi cur ku min di Rûdawê de xwendine, ez dibînim ku ew rojnameyeke cidî û giran e. Lê di hejmara dawî de me karîkatûrek dît ku bi reng û mijara xwe ciwan bû, lê hin peyvên “balkêş” yên provokatîv tê de bûn. Ez naxwazim ez şaş bêm fam kirin û bibêjin ev naxwaze pêkenok û henek di Rûdawê de hebin, nexêr. Lê eger hebin, bila hesasiyeta tevaya xwendevanan li ber çav bigrin, ji ber ku ne tenê kesên ciwan li karîkatûran dinêrin, lê kesên temenmezin û zarok jî.

**Zêrîn Aram**

Holanda

### We pîroz dikim

Bi kurt û kurmancî: ez we pîroz dikim û gelekî kêfxweşim ku rojnameyek kurdî jî li Ewrûpa peyda dibe. Destê we sax be û her bijîn...

**Hasan Arslan**

Stuttgart



## Xaltîka Fatê

# Fatê were civatê

*Silav xaltîka Fatê,*

*Navê min Mişko ye, ez 21 salî me û niha li bajarekî tirkan dijîm. Ez tiral û betal im, naxebitim û virde wêde lotikên beredayî davêjim. Haaa, carna jî serê xwe bi siyasetê re dêşînim.*

*Bawerim te êrîşa pozşikandina xalê me Ehmed Kurd bihîst xaltîka Fatê, îcar ez wek siyasetmedarekî tiral û beredayî dipisim:*

*Gelo çima pozê xalê me Ehmed Kurd şikandin?*

*Dîsa silavan li te dikim û lêvên te radimîsim.*

***Mişkoyê Tiral***

*Tirkiye*

### Bersiva xaltîka Fatê

Kuro law Mişko, weyla pisîkan herdu h..... te xwaro, ma tiralekî wek te û siyaset? Ma law Mişk û siyaset? Tu li çara serê xwe û pisîkan bigere oxlim, pisîk te nexwin ha! Ma serê te bi pozê Ehmed Kurd ketiye bêbav, ka berê ji xwe re karekî bibîne û ji vê tiraliyê xilas be, piştre pozê xwe têxe nav pozê xelkê qûnreşo, wî!

Axir, madem te stuyê xwe şikandiye û xwe avêtiye tor û bextê min, ezê lotikekê li der qûna te xim û bersiva te bidim sayin Mişkoyê Tiral û zigurd...

Law pozê xalê te Ehmed Kurd ji ber vê yekê şikandin ewladim:

Pozê kurdan ne dişewitî, ji bo pozê kurdan bişewite û sînorekî têxin navbera xwe û tirkan, pozê xalê te Ehmed şikandin.

Pozê kurdan ne dişewitî û xîreta wan nedijeniya. Ji bo kurd xwe nas bikin û dev ji şildim bildima zimanê dêlika Asenayê berdin û xwedî li ziman û nasnama xwe derkevin, pozê xalê te Ehmed şikandin. Ji bo ku rojeva tirk û kurdan bikin şorbe û lotikekê li Hecî Erdoğan û hikûmeta wî xin, pozê xalê te Ehmed şikandin.

Ji bo ku Ergenegû heyfa xwe hilîne û cîh li reformên Hecî Erdoğan teng bikin, pozê xalê te Ehmed şikandin. Û di dawî de jî:

Ji bo ku xaltîka te Fatê bînin provokasyonê pozê xalê te Ehmed şikandin oxliiimmm!!!!



# "Kalî" qurbanên mirovî dixwaze

Li perestgeheke navçeyî ya xudaya bi navê "Kalî" ku dikeve devera Pîr Biham li Eyaleta Bengal a Rojavaya Hindistanê, mirovekî serbirî hat dîtin. Hat ragihandin ku ew mirov weke qurban hatiye serjêkirin.

Polîsên wê herêma ku ew mirov lê hatiye serbirîn, derbarê gundiyekî ku tê guman kirin wî ew kar pêk aniye, lêkolîn dest pê kirine. Berpirsê îdareya wê navçeyê da xuya kirin ku "Ji bo razîkirina xudayan, ev zilam hatiye qurban kirin." Ji aliyekî din ve serokê opozisyonê Samîr Kumar Ray got "ev tişt ji Eyaleta Bengalê re şermezariyek e, ji ber ku hevpeymaniya Çep a deshilatdar idia dike ku wan kevneşopiyên civakî yên şaş, nehiştine."

Li gor yasaya Hindistanê qurbanîkirina mirovan qedexe ye, lê dîsan jî hin kes dikevin jêr tesîra sahir û fêlbazan û bo guhertina bextên xwe, karên weke qurbanîkirina mirovan pêk tînin.

Yaw seyda, ev bihuşt çawa ye lo, xweş e?

Ohooo, 70 horî hene, hema nayê gotin û hew..

Ma Nûrî ji tunene seyda? Navbera min û horîyan hinekî ne xweş e lo..

# Muzexaneya Qehweyê deriyên xwe vekir



Li welatê Komara Çekê gelek curên muzexaneyan hene. Niha jî li paytexta wî welatî, li Pragê muzexaneyek bo qehweyê û yek jî bo sihirbendiyê hatin avakirin.

Muzexaneya Qehweyê dikeve taxa dîrokî ya bi navê "Mala Strana" û piştî muzexaneyên Amsterdam û Londonê, ew sêyemîn muzexaneya qehweyê ye. Serlêderên vê muzexaneyê dikarin hemû cureyên qehweyê vexwen, qunaxên çêkirina wê nas bikin, zaniyariyên li ser dewletên ku qehweyê berhem tînin hîn bibin û curên fincanên qehweyê bibînin.

Li aliyekî din ê Pragê, muzexaneyeke sihirbendiyê hatiye avakirin û tê de dîroka vê pîşeyê û kerestên ku tên bikaranîn, hatine nîşandayîn. Ev muzexane ji aliyê sahirê Çekî yê navdar, Jaroslav Zach ê 81 salî li devera Jaromer a ku weke "dergûş sihrê" tê naskirin, hatiye çêkirin.

# Kirîstal bi albûma xwe ya yekê tê

**Hewlêr (Rûdaw) –** Kirîstal keçeke stranbêj a ciwan ji bajarê Silêmaniyê ye. Ew xwe ji bo derxistina yekemîn albûmê amade dike ku ji 10 stranan pêk hatiye. Heta niha wê navek ji albûma xwe re diyar nekiriye. Di dahatûyeke nêzîk de, Kirîstal dixwaze ji bo yek ji stranên xwe bi navê 'Weyş' klîpekê çêbike.

Kirîstal a 22 salî niha li bajarê Silêmaniyê dijî. Demek dibej mijûlî çêkirina albûmeke nû ye û ya balkêş ew e, Kirîstal bo cara yekemîn e stranan dibêje. Lê ji temenê zarokiyê ve meraqa strangotinê bû.



Kirîstal